10 له كوردستان

قەرەجەکان تاقەتی سواڵکردنیان نەماوە





Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 92 | 21 Nîsan / April 2011







# YSK'ê KURD ŞOK KIRIN







5/14 »

## Kurdên Ewrûpa

### Nedîm bû qurbanê êrîşeke amok

Li Hollanda Kurdekî ji Rojavaye Kurdistanê bi destê ciwanekî Hollandî hat kuştin. Nedîm Yûsivê (42) bavê du zarokan ji sala 2007'ê ve li bajarê Alphen aan den Rijn dijiya. Roja roja 10'ê Nîsanê di nav bazara bajêr de ciwanekî Hollandî (24) bi awayekî armanc nediyar gulleyan li xelkê li bazarê diteqîne û 6 kesan dikuje û 17 kesên din jî birîndar dike. Yek ji kesên ku hatin kuştin jî helbestvan û çalakvanê Kurd Nedîm Yûsiv bû.

Nedîm Yûsiv di sala 2005'ê de ji êrîşeke bombeyî xilas bûbû û kuştina wî destpêkê şik birin ser îstixbarata Sûriyê ku destê wê di bûyerê de hebe. Rûpel ▶6

## Rojavayê Kurdistan

### Partî ketin nav helwestên yekîtiyê

Li Rojavayê Kurdistanê ligel xwepêşandanên gel, di qada siyasî de jî helwestên balkêş rû didin. Hejmara zêde ya partî û dezgehên Kurdan li Sûriyê gelek caran dibe sedem ku ne tenê li derve, lê li hundirê Sûriyê jî neyê zanîn kîjan partî di kîjan rewşê de ye, heta hejmara wan jî tam neyê zanîn. Lê hat bihîstin ku partiyên Kurdên Rojavayê Kurdistanê ku heta niha di bin banên Encûmena Siyasî û Hevbendî tevdigeriyan, van rojan tevî PYD'ê civiyane û biryar girtine ku di vê dema hesas de di bin banê "Partiyên Tevgera Niştîmanî ya Kurd li Sûriyê" tevbigerin. Rûpel ▶3/5/14

## Başûrê Kurdistanê

### Xwepêşandan 2 mehan didomin

Nerazîbûnên ku di 17'ê Sibatê de li Silêmaniyê destpê kirin, van rojan 60 rojiya xwe qedandin. Çalakî carcaran veguherin pevçûnan û heta niha bi dehan hemwelatî bûne qurbanî û bi sedan kes jî birîndar bûne. Xwepêşandana ku wê demê ji aliyê 'Tora Bergiriya Maf û Azadiyên Xelkê' hatibu destpêkirin û piştî bûyera li pêş Liqa 4'ê ya PDK'ê berfireh bûn, niha di serî de Tevgera Goran, Komela Îslamî û Yekgirtûya Îslamî piştevaniya wê dikin. Endamê Polîtburoya Yekgirtûya Îslamiya Kurdistanê, Mihemed Ferec, ji Rûdawê re nerînên xwe derbarê rêyên çareserkirina vê krîzê anîn ziman. Rûpel ▶10







Great Britain

Li gor peymeneke di navbera Hikûmetên Îraq û DYA'yê de, pêwîst e heta dawiya îsal hemû hêzên leşkerî yên amerîkî bi temamî ji Îraqê vekişin, lê Amerîka ji asta hêza artêşa Îraqê bi guman e.



# Amerîka dixwaze vekişe lê ditirse

## Pisporek amerîkî: Amerîkî ji wê yekê ditirsin ku piştî vekişîna wan ji Îraqê, dibe ku şerê Kurd û Ereban destpê bike.

**Hawar Ebdûlrezaq** Hewlêr

Bi baweriya çend pisporên amerîkî dirêjkirina mayîna hêzên Amerîka li Îraqê "pir girîng e." Bi taybet jî li navçeyên ku nakokî li ser wan hene û çarenivîsa wan nehatine yekalîkirin û dibe ku vekişandina hezên Amerîka şerê Kurd û Ereban bi xwe re bîne. Li gor peymana navbera Îraq û Amerîka pêwîst e hêzên Amerîkayê berî dawiya 2011'ê ji Îraqê vekişin.

Heftiya borî Wezîrê Parastinê yê Amerîka Robert Gates serdana Bexda û Hewlêrê kir. Gates daxwaza mayînê nîşan da, lê piştî xwepêşandanên li welatên Ereban û li bajarên Îraqê bi taybetî ji bo vekişandina Amerîka hatin kirin, Gates dixwest Îraqî jê re bêjin, 'pêwîst e hêzên Amerîka bimînin.'

Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fûad Hûsên diyar kir ku desthilata Hikûmeta Herêma Kurdistanê tune ku biryarê li ser mana hêzên amerîkî bide. Ji ber vê yekê jî di wê derbarê de helwesta Hewlêr piştî ya Bexdayê tê. Lê Wezîrê Pêşmergeyan Cehfer Şêx Mistefa heftiya borî bi eşkere ji Rûdawê re got: "Em li gel mana hêzên Amerîkî ne, heta hemû pirsgirêkên navbera Hewlêr û Bexda çareser nebin, bi taybet jî pirsgirêka navçeyên veqetayî."

Bi baweriya Alîkarê Serokê Enstîtûya Aştiyê ya DYA (United States Institute of Peace) û şarezayê siyaseta Amerîka yê li Rojhilata Navîn û îraqê Danial P. Serwer, mayîna hêzên Amerîkî li Îraqê tirsa Amerîka ya derketina şerê navxweyî li Îraqê eşkere dike: "Di rastiya xwe de Amerîka dixwaze vekişe, lê hêjî li Îraqê metirsiya hinek pirsgirêkên ku nehatine çareserkirin heye. Ew ditirsin ku eger vekişin, dibe ku şerê Kurd û Ereban derkeve."

Di pêvajoya hilbijartinê de yek ji sozên serokê DYA'yê Barack Obama vekişandina ji Îraqê bû. Niha jî wekî destkeftiyekê ji bo hilbijartinên pêş bikartîne. Bi baweriya Prof. Serwer, "Bandora mayîna artêşa Amerîka li Îraqê, piştî 2011'ê, girêdayî wê yekê ye ku piştre wê çi rolê wan hebe. Eger rolê wan wekî dema borî be, dibe ku bandorek neyînî hebe."

Di sala 2008'ê de, di encama peymanek navbera Îraq û Amerîka de, dema vekişandina hêzên Amerîka hat diyarkirin û berî dawiya 2011'ê pêwîst e hêzên Amerîka vekişin. Lê li gor wê peymanê, mafê deshilatdarên Îraqê heye ku daxwazê ji Amerîka bikin ku dema mayîna xwe dirêj bikin.

Bi baweriya çavdêrên siyasî Kurd piştgirî didin mayîna hêzên Amerîka li Îraqê, lê piraniya berpirsên Ereb li dijî wê yekê ne. Heftiya borî piştî serdana Gates a Îraqê, li Bexdayê li dijî hebûna artêşa Amerîka xwepêşandanek berfireh hat lidarxistin. Herwiha Mûqteda Sedir jî hişyarî da Amerîka ku fikra mayînê nekin. Li gor nerîna Cîgirê Serokê Beşa Rojhilata Navîn û Bakûrê Afrîqa yê Grûba Krîza Navnetewî (International Crisis Group) Yoost Hiltermann, beşek ji daxwaza Amerîka ya ji bo mayînê ew e ku asta artêşa Îraqê ne di astek diyar de ye ku bikare bi tenê rûbirûyê pirsgirêkan bibe: "Agahdariya Amerîka ji karînên lawaz ên artêşa Îraqê heye û dizane eger demek dirêjtir hebe, dikare ji bo nehîştina wê lawaziyê karek zêdetir bike."

Lê bi baweriya pisporekî din ê amerîkî, ya baş ew e ku Amerîka di dema hatî diyarkirin de vekişe û çarenivîsa Îraqê ji Îraqiyan re bihêle. Li gor pispor û şarezayê Enstîtûya Rojhilata Navîn li Washington Wayn Wayt, di berjewendiya herdu aliyan de ye ku artêşa Amerîka dawiya îsal bi temamî vekişe: "Ji ber ku li gel vekişandina Amerîka, Îraq dikare bi temamî ji xwe re serxwebûnê pêkbîne. Ev yek jî pir girîng e, bi taybet jî di cîhana Ereb de."

## Amerîka li Hewlêrê konsolxaneya xwe vedike

Berpirsekî Amerîka li Herêma Kurdistanê ji bo Rûdawê ragehand ku berî dawiya îsal welatê wî bi fermî konsolxaneya xwe li Hewlêrê vedike.

Serokê Beşa Dîplomasiya Giştî ya Tîma Avakirina Herêmî RRT li Herêma Kurdistanê, Dell Prince, ji bo Rûdawê daxuyan ku bi niyet in di demeke nêzîk de tîma wan a ku niha li Hewlêrê heye bikin konsolxaneya giştî ya Amerîka û got: "Me ragehandiye ku îsal RRT dikin konsolxane." Prince got ku heta niha dema vekirina konsolxaneyê nehatiye diyarkirin, "Lê di demeke nêzîk de ew kar tê kirin."

Di 19'ê Gulana par de, Kongreya Amerîka ji bo vekirina konsolxaneyeke giştî li Hewlêrê pêşniyara 4 endamên Kongreyê qebûl kiribû. Li gor lihevhatina navbera Îraq û Amerîka, heta dawiya îsal Amerîka hêzên xwe yên leşkerî ji Îraqê vedikişîne. Di vê çarçoveyê de, hinek ji hêzên Amerîka li Hewlêrê ku bi karê sivîl ve mijûl bûn, heftiya borî çûn Amerîka û dest bi wergirtina formên kesên ku dixwazin li konsolxaneya Amerîka li Hewlêrê kar bikin hat kirin.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Fîrat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Sûriye bi 400 milyon Dolar hat cezakirin

*Rûdaw – Di doza du malbatên Amerîkî de ku kesên wan ji aliyê rêxistina Al-Qaîde li Îraqê hatibûn kuştin, Sûriye sûcdar hat ditîn û mehkûmî dana zêdeyî 400 milyon Dolar hat kirin. Serlêdana malbatên herdu karsazên Amerîkî Jack Armstrong û Jack Hensley li DYA'yê hat pejirandin û Dadgeha Herêma Kolombiya, Hikûmeta Sûriyê bi dana 400 milyon Dolar cezakir. Doza ku di sala 2006'ê de li dijî Hikûmeta Sûriyê û Serokê Sûriyê Beşar Esad û sîxuriya leşkerî û revebire wê Asif Şewket hat vekirin, tê de Şam bi piştgiriya darayî ji bo rêxistinên çekdar ên tundrew hatiye tometbarkirin.*

*Di biryarê de Dadgeha Herêma Kolombiya wiha nivîsandiye: "Gilîkaran bi belgeyan selimandiye ku Sûriyê piştîvaniyeke mezin li Zerqawî û El-Qaîde li Îraqê kiriye", ev jî bûye sedemê kuştina herdu karsazên Amerîkî Jack Armstrong û Jack Hensley û serjêkirina wan. Dadgehê ron kiriye ku: "Awayê hovane yê darvekirina wan û wê êşa bê mînak ku qurbanî û endamên binemalên wan kişand, wisa kir ku tawîza wan zêde be." Dadgehê biryar da ku 50 milyon Dolar tawîza êş û azarê be, 150 milyon Dolar jî weke tawîzeke darayî be. Herdu karsazên amerîkî di sala 2004'ê de li Îraqê ji aliyê rêxistina Al-Qaîde hatibûn kuştin.*

*Hikûmeta Sûriyê parêzerê Saddam, Ramzî Klark bi dijderketina biryarê wezîfedar kir.*

# Partiyên Rojava biryara yekîtiyê dan

**Mirov dikare partiyên Rojavayê Kurdistanê di sê navendan de dabeş bike: Hevbendî, Encûmena Siyasî û PYD**




**Hîm Mele Ehmed**

Hejmara zêde ya partî û dezgehên Kurd li Sûriyê gelek caran bûye sedema nenaskirina rastiya dîmena siyasî li vî perçeyê Kurdistanê. Ev nenaskirin ne tenê ji bo Kurdên ji perçeyê din derbas dibe, lê Kurdên Rojava bi xwe jî ji ber hejmara zêde ya partî û dezgehan hejmara rastî ya partiyên Kurdên Rojava nizanin. Ji ber ku gelek caran çend partî dibin yek, lê piştî demekê çend kes ji derveyî welat belavokekê bi navê partiya kevin derdixin û perçebûn kûr dikin. Partiya Rêkeftin û Al-Partî ji bo mijarê nimûneyên baş in, ya yekê bûye 4 parçe û ya duyem jî bûye 3 perçe. Nivîskar Berzo Mehmûd ku kesekî serbixwe ye û li Qamişlo dimîne, di gotarekê de bi ferehî li ser vê mijarê radiweste. Ew partiyên Rojava di du koman de dabeş dike: Koma Partiyên Mezin û Koma Partiyên Biçûk.

### 5 partiyên mezin û 10 partiyên biçûk hene

Li gor nerîna Berzo Mehmûd koma partiyên mezin ji 5 partiyan pêk tên, ew jî ev in: Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê bi rêberiya Dr. Hekîm, Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê bi rêberiya Îsmaîl Hemê, Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê, piştî koçkirina serokê wê Îsmaîl Omer niha bi rêberiya sekreterê wê M. Şêx Alî, Partiya Pêşverûya Demokrata Kurd li Sûriyê bi rêberiya Hemîd Derwêş û Partiya Yekîtiya Demokrat - PYD ku nêzîkî PKK'ê tên dîtin. Herwiha 10 partiyên biçûk hene, ku hebûna wan di nav gel de gelek kêm e û bi navê sekreterê xwe tên naskirin. Ji bilî partiyên ku Mehmûd binav kirin, hejmarek partiyên din jî hene ku tenê li derveyî welat in û biçûk in.

### Sê navendên xebatê

Di nav pirbûna hejmara partiyan de û ji ber tunebûna isbatên mezinî û biçûkiya partiyan, gel û kesên siyasî jî li ber astengiya peydakirina gotina siyasî û armanca yekbûyî ya Kurdên Sûriyê bê çare dimînin. Ji ber vê pirsgirêkê daxwazên yekkirina partiyan hertim bilindtir dibûn, nemaze ji dawiya salên 80'an ve. Lê dîroka jiyana rêxistinî dide xuyakirin ku perçebûn û zêdebûna partiyan ji yekîtiyan bêhtir e. Niha du çarçove hene, yek Hevbendiya Demokrata Kurd li Sûriyê ku di bin banê wê de du partî (Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê û Partiya Pêşverûya Demokrata Kurd li Sûriyê) cih digrin. Çarçova din jî Encumena Siyasiya Kurd li Sûriyê ye. Ev encumen banê 9 partiyan e. Ango mirov dikare xebata siyasî ya Kurdên Rojava di 3 navendan de dabeş bike. Hevbendî, Encumena Siyasî û PYD.

### Hevkariya ji bo Serhildana Sûriyê

Ji dema destpêkirina xwepêşandanan li Sûriyê ragehandinên fermî yên rêxistinan gelek caran bi navê çarçoveyan hatin, di heman demê de endamên çarçoveyan belavokên bi navê partiyên xwe belav kirin, carna jî di nava çarçoveyan de hevkariyên nû peyda bûn, wek Komîteya Hevkariyê ya Partiya Yekîtî, Azadî û Pêşeroj, ku çend ragehandin derxist. Ev hersê partî endamên Encumena siyasî ne. Ragihandinên 5 heftiyên çûyî bi giştî didan xuyakirin ku hevkariya di nav partiyên Kurdên Rojava de pir kêm e. Lê carnan jî ragihandinên bi navê Koma Partiyên Kurd li Sûriyê derketin.

### Tevgera Niştîmanî ya Kurd

Di 14'ê Nîsanê de di nav hersê navendên tevgera Siyasî ya Kurd li Sûriyê civînek hat lidarxistin û di encamê de hersê alî çarçoveyek nû ragihandin. Berpirsê rêxistina Ewrûpa yê Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê Mizgîn Mêqerî li ser vê mijarê ji Rûdawê re got ku partiyên Kurd niha bûne yek: "Encumena Siyasî, Hevbendî û PYD ew niha di bin yek siwanê de, bi navê Partiyên Tevgera Niştîmanî ya Kurd li Sûriyê kom bûne, ew niha nûnerên gelê Kurd in û kes nikare wan li paş guhê xwe bihêle. Li gel ku çend dengên li dijî tevgerê derdikevin, lê ew ê nikaribin rêya gel biguherin û em bi hêvî ne ku ev çarçoveya hevkariyê kûrtir bibe." Li ser pirsa me ya wek, gelo ev çarçoveya nû tê wateya ku Encûmena Siyasî û Hevbendî bidawî bûne, Mêqerî dibêje: "Nexêr, çarçoveyên kevin hîn hene, lê daxwaza me ew e ku di pêşerojê de ev nemînin. Ez hêvî dikim ku ragihandinên vê çarçoveya nû ne bi navê Partiyên Tevgerê lê bi navê Tevgera Niştîmanî ya Kurd derkevin."

Melayên kurd bi biryar in:

# Kurdî tune be mizgeft jî tune ne!

**Amed (Rûdaw) –** Melayên kurd ên ku her hefteyê li pêşiya bi hezaran kesî li Amedê nimêja înê ya sivîl didin kirin, diyar kirin ku heta di mizgeftan de bi zimanê kurdî weaz û xutbe neyên dayîn, wê neçin mizgeftan û wê nimêja înê ya sivîl li meydanan bikin.

Melayên kurd Seydayê Kavarê û Melayê teqewîtbûyî Yusuf Zumrut ku her hefte li Qada Deriyê Çiyê ya Amedê li pêşiya bi hezaran kesî nimêja înê ya sivîl didin kirin, derbarê armanca xwe de ji Rûdawê re axivîn. Ji melayan Seydayê Kavarê bal kişand ku ji avakirina Komara Tirkiyê ve zimanê Kurdan weke dibistanan di mizgeftan de jî hatiye qedexekirin û da zanîn ku înkarkirina zimanan înkara ayetên Xwedê ye.

Seydayê Kavarê armanca xwe ji Rûdawê re wiha vegot: "Em dibêjin eger heqîqeten Xwedê teala em Kurd çêkirine, me ne pêxemberekî, ne lîderekî, ne şehîdekî, ne weliyekî neşandiye cem Xwedê Teala. Me jê re negotiye me Kurd çêbike. Wî bi quwet, qudret û ezameta xwe em Kurd çêkirine. Îcar Dewleta Tirk dibêje hûn Tirk in, lê belê ev zimanê di hundirê devê me de, hatiye qedexekirin. Kurdî di dibistan û mizgeftan de qedexe ye. Nahêlin em weke Kurd bijîn. Eger heqîqeten em Kurd bin, zimanê me jî kurdî ye. Wê çaxê divê em wî zimanê ku Xwedê teala daye me, em bidin jiyandin."

**'Mirov bi ziman û dil hene'**

Seydayê Kavarê bal kişand ku "nîvê însan ziman, nîvî jî dil e" û wiha berdewam kir: "Yên din tev xwîn e, tev goşt e, tev hestî ye. Miletê me dixwaze em xutbeyê bi kurdî bidin. Em di her şert û mercê de Kurd in, em ê xutbeya xwe, weazên xwe bi kurdî bidin. Heta ku kurdî di mizgeftan de serbest nebe, em ê dev ji vê helwesta xwe ya nimêja înê ya li qadan bernedin." Kavarê ji jiyana Hz. Muhamed jî mînaka nimêja înê da û wiha got: "Wextê ku Hz. Muhamed Mustafa ji Mekê hate Medînê, li tenişta Medîneyê Xwedê Teala emir jê re şand, ayeta nimêja înê şand. Got nimêja înê li ser Misilmanan ferz e. Hz. Muhamed di nava geliyekî de nimêja înê kir, çawa ku em jî her hefte li meydana Deriyê Çiyê dikin, wisa kir. Bi taybetî jî di meseba Şafiî de awayê kirina nimêja înê bi vî awayî jî dibe."

**'Bila kurmancî û zazakî serdest bin'**


Wêne: Rûdaw

Li "Qada Deriyê Çiyê" li Amedê ku van rojan bi hezaran bawermend nimêja xwe dikin, di 29'ê Pûşpera 1925'ê de Şêx Seîd hate darvekirin.

Mela Yusuf Zumrut jî fikr û ramanên xwe bi Rûdawê re parve kir û da zanîn ku derbarê kîtekîtên nimêjê de ti tişt nehatine gotin. Zumrut nêrîna xwe wiha anî zimên: "Gava ku Xwedê Teala nimêj ferz kiriye, gotiye nimêj bikin. Şeklê kirina nimêjê, teferûatên wê negotine. Bila herin li îmamê Şafiî, hedîsan binêrin, şert nîne ku nimêja înê di mizgeftan de bê kirin." Zumrut li hemberî sonda ku mela ji bo bibin karmendê dewletê dixwînin jî nerazîbûn nîşan da û got ku ew sond nelê ye û ti eleqeya wê bi Misilmanetiyê tune ye. Zumrut xwest ku di demeke kin de di mizgeftên li bajarên Kurdan de kurmancî û zazakî serdest bibe û careke din dubare kir ku heta li mizgeftan xutbe û weaz bi kurdî neyên dayîn, wê li mizgeftan nimêj nekin.


Seydayê Kavarê


Mela Yusuf Zumrut

**Eger heqîqeten em Kurd bin, zimanê me jî kurdî ye. Wê çaxê divê em wî zimanê ku Xwedê teala daye me, em bidin jiyandin.**

**Gava ku xwedê Teala nimêj ferz kiriye, gotiye nimêj bikin. Heta li mizgeftan xutbe û weaz bi kurdî neyên dayîn, em ê li mizgeftan nimêj nekin.**

---

Hêmin Xoşnaw

# AKP parlementerên esil-Kurd, an parlementerê Kurd dixwaze?

Roja 11'ê Nîsanê AKP'ê lîsteya namzetên xwe yên ji bo hilbijartinê eşkere kir. Di nava wê lîstê de 167 parlementerên AKP'ê yên berê û piraniya wan jî Kurd, nekirin namzet. Vê yekê jî helwesta AKP'ê ya derbarê çareserkirina pirsa Kurd kir cihê pirsê.

Di hilbijartina sala 2007'ê, AKP'ê bi serokatiya Recep Tayyîp Erdogan 355 kursî bi dest xistin û karîbû bi tenê hikûmetê saz bike. AKP dixwaze vê carê jî li Tirkiyê serkêşiya deshilatdariyê bigre destê xwe û hemû anket jî vî şansî didinê. Lîsta AKP'ê ya vê carê ji 541 namzetan pêktê û ji wan jî 78 jin in. Lê di lîsteya nû de 167 parlementerên niha cîh nagirin û ji wan jî 75 Kurd in.

Serokê berê yê Odeya Bazirganiya Amedê Galîp Ensarîoglu li Amedê di rêza dûyem a namzetên AKP'ê de ye û derbarê namzetnekirina piraniya parlementerên berê de dibêje ku rexneyên gel li ser wan parlementeran hebû. Ensarîoglu ji Rûdawê re got: "Ew parlementerên Kurd ên AKP'ê di dema pêvajoya vebûnê de ji bo serkeftinê hewldanên ciddî nedane û ji gel dûr ketine. Ev jî sedema serekî ye ku nebûne namzet."

Bi baweriya mamostayê Zanîngeha Dîcle û Endamê Konseya Biryarê yê AKP'ê, Prof. Mazhar Bagli, li başûrê rojhilat pêwîstî bi nûbûnê heye: "Di diyarkirina namzetên hilbijartina 12'ê Pûşperê de ciwanî û newestandin li ber çavan hatiye girtin. Li wê navçeyê pêwîstiya AKP'ê bi nûbûn û derxistina endamên nû heye." Bagli derbarê rexneyên ku li parlementerên Kurd tên girtin ji Rûdawê re got: "Eger em bêjin wan ji bo çareserkirina pirsa Kurd kar nekirine, em neheqiyê li wan dikin. Lê zêde tevlî gel nebûn û nekarîn bi başî projeya vebûnê ji hevwelatiyan re behs bikin."

Çend parlementerên ku nekirine namzet ev in: Îhsan Arslan, Abdurrahman Kurt û Mîr Dengîr Firat. Herwiha dihat texmînkirin ku kesayetên wekî Haşim Haşimî û Mazhar Bagli bikin namzet, lê navê wan jî neket lîsteyê.

Di nava raya giştî ya Tirkiyê û çapemeniya Tirk de tê gotin ku AKP wê ji çareseriya Kurd poşman bibe û wê meydanê ji BDP'ê re bihêle. Lê namzet û berpirsên AKP'ê ne amade ne li ser wê pirsê biaxivin.

Ji Zanîngeha Dîcle Dr. Vahab Coşkun dibêje, li navendên nêzîkê AKP'ê jî tirsek ji poşmanbûna partiya wan a ji çareserkirina pirsa Kurd heye. Lê bi baweriya Coşkun, "AKP hewl dide ku gav bi gav çareser bike. Parlementerên berê bi bihaneya ku erkên xwe li beramberî çareserkirina pirsa Kurd cîbicî nekirine, nekirine namzet. Lê niha kesên bi tevayî ne şareza û bêyî agehdariya pirsa Kurd, kirine namzet. Ew jî bextreşiyan zêdetir dike." Gelo AKP wê dest ji çareserkirina pirsa Kurd berde? Coşkun dibêje: "Ez ne di wê baweriyê de me. Lê Erdogan hewl dide ku kesên bi bawer bibe parlementoyê, da bikare pêşgaviya wê meseleyê bigre destê xwe û bi awayê ku bi xwe dixwaze pirsa Kurd çareser bike."

Parlementerên Kurd ên AKP'yî ger di nava semîner û civînên partiya xwe de tekez li ser Kurdbûna xwe kiribin jî, lê li derve zêdetir tekez li ser nirxên ol û mirovatiyê dikirin. Wan pir kêm behsa Kurdan dikirin, zêdetir wek parlementerên bi eslê xwe Kurd dihatin naskirin, ne wekî parlementerên Kurd.

Oya Eronat li Amedê namzeta AKP'ê ye û dibêje, namzetên nû yên AKP'ê kesên niştîmanperwer in û bi asta ku ji Tirkiyê hez dikin, bi heman astê ji Amedê jî hez dikin. Galîp Ensarîoglu jî tekezê li ser Kurdbûnê ne bi 'eslê xwe Kurd' dike û dibêje: "Divê parlementerên AKP'ê yên nû tabûyan bişkênin û taybetmendiya Kurdbûna wan diyar be."


Galîp Ensarîoglu


Vahap Coşkun

**Divê parlementerên AKP'ê yên nû tabûyan bişkênin û taybetmendiya Kurdbûna wan diyar be.**

**Parlementerên berê bi bihaneya ku erkên xwe li beramberî çareserkirina pirsa Kurd cîbicî nekirine, nekirine namzet.**

# "Biryara YSK'ê bû wek tsûnamî"

Biryara YSK'ê li Tirkiyê bû sedemê aloziyeke siyasî ya 24 saetî. Lê piştî daxuyaniyên partiyên siyasî, bangên rojnamevanan û xwepêşandanên Kurdan li gelek bajaran, YSK'ê paşve gav avêt.

**Azad Dîcle**

Dezgeha Bilind a Hilbijartinê (YSK) roja 18'ê Nîsanê biryarek da ku qada siyaseta Tirkiyê germ bike û tevlihev bike. YSK derbarê serlêdana 12 namzetên serbixwe de biryara vetoyê da û mafê wan ê namzetiyê vemirand. Li ser vê yekê di serî de rayedarên BDP 'ê, nûnerên partiyên siyasî yên Tirk û gelek rojnamevan di quncikê xwe de biryara YSK'ê rexne kirin û gotin, "Ev biryareke siyasî ye û wê şikê bibe ser hilbijartinan û demokrasiya Tirkiyê." Namzetên Kurd Hasîp Kaplan, Şerafettin Elçî û Sebahat Tuncel jî ji Rûdawê re daxuyandin ku ev biryar li dijî bloka wan e û niyeta aloziyê tê de heye.



Jor: Leyla Zana, Gultan Kişanak, Sebahat Tuncel Jêr: Salih Yildiz, Hatîp Dicle, Ertugrul Kurkçu

### "Karê YSK'ê tenê birêvebirina hilbijartinê ye"

Parlamenterê BDP'ê yê Şirnexê Hasip Kaplan biryara YSK'ê li dijî rêbazên huqûqî binav kir û got wê ev biryar di qada siyasî de bibe sedemê tsunamiyekî mezin. Kaplan wiha axivî: "Ev biryar derbeyek li himberê Bloka Ked, Azadî û Demokrasiyê ye. Wê bibe sedemê pevçûnan û bêbaweriya di nava gel de kûr bike. YSK nikare biryarên siyasî bide, tenê karê wê ew e ku hilbijartinê birêvebibe." Kaplan bibîrxist ku di sala 2002'ê de li himberê Recep Tayyip Erdogan jî biryara veto hat standin, lê parlamento rûnişt û jê re çareseriyek dîtin û Erdogan kete hilbijartinan. Lê Kaplan bawer nake ku parlamento bi taybetî ji bo namzetên wan rûnê û biryarek nû derxe. Kaplan da zanîn ku Gultan Kişanak û Sebahat Tuncel niha parlementer in û herwiha Ertugrul Kurkçu ji ber dozek 40 sal berê niha nikare bibe namzet û wiha got "Divê YSK biryara xwe dîsa di ber çavan re derbas bike. Em vê biryarê rewa û rast nabînin." Hasip Kaplan di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku tenê rêyek heye û ew jî mafê îtirazê ye: "Wê mafê xwe yê huqûqî bikarbînin, lê xuya ye kesên ku vê biryara vetoyê girtine niyeta wan ne çareserî ye, lê dixwazin aloziyê derxin. Ji ber vê yekê ez zêde ne bi hêvî me."

### "Di huqûqê de niyet girîng e"

Serokê KADEP'ê Şerafettin Elçî jî ku bi xwe huqûqnas e, biryara YSK'ê li gor rêbazên huqûqî nirxand û got hemû biryarên huqûqê bi niyetekî siyasî ve girêdayî ne. Elçî wiha axivî: "Ya girîng ew e ku em bizanibin huqûq biryarên xwe bi kîjan niyetî digire. Eger niyet xirab be, qedexekirin, astengkirin tê rojevê, lê dema ku niyet pak be hemû derî vekirî dimînin û rewşeke nerm tê destpêkirin." Li gor Elçî dezgehên dadê xebatên xwe li Tirkiyê di bin bandora îdeolojiya fermî de didomînin û got "ev sazî û dezgeh xwe wek parêzvanê dewleta kemalîst dibînin û biryara li gor wê didin. Ji ber wê yekê hemû biryarên dadê li dijî Kurdan derdikevin. Elçî derbarê Gultan Kişanak û Sebahat Tuncel de jî got ku wan berê mafê parlementeriyê standine û eger pirsgirêkên wan hebûna wê nikaribûna di sala 2007'ê de tevlî hilbijartinan bibûna. Leyla Zana û Hatîp Dîcle jî serî li dadgehê dan û pirsîn ka li himberê wan ti astengiyeke huqûqî heye yan na, dadgehê bersiva daye, gotiye li gor guhertinên dawiyê mafê we yên astengkirî hemû hatine dayîn û wan jî namzetiya xwe diyar kirin."

### "YSK: Em ê serlêdana wan di ber çavan re derbas bikin"

Lê piştî ku ji nûnerên partiyan û ji raya giştî rexne zêde bûn û li Amed, Stenbol û Wanê xwepêşandan destpêkirin, Serokê YSK'ê Ali Em li ber deriyê avahiya YSK'ê pirsên çapemeniyê bersivand û got, "Me ne biryarek siyasî daye, mafê wan kesan heye ku îtiraz bikin." Ali Em wiha dom kir: "Em ê serlêdana wan di ber çavan re derbas bikin. Ez niha nikarim bêjim erê yan na, lê em ê yek bi yek rewsa wan binirxînin." Piştî daxuyaniya YSK'ê ya ku belgeyên 10 namzetan kêm in û ger bên temamkirin, dikarin bikevin hilbijartinê, Hevserokê BDP'ê Selahattîn Demirtaş daxuyand, "Hevalên me wan belgeyan amade dikin. Em ê belgeyan ji YSK'ê re bişînin."

Parlamentera BDP'ê ya Stenbolê Sebahat Tuncel jî ji Rûdawê re ragihand ku ne tenê li dijî têkoşîna wan a parlementoyê, di her qadê siyasî de li dijî gelê Kurd bêtehemûlî heye û li her derê ji wan re asteng tên derxistin. Tuncel derbarê pirsgirêka huqûqî ya ku bibe asteng li pêşiya nanzetiya wê de got, "Cezeyak min heye, lê ew jî beriya 2007'ê rû dabû û ez ligel vê pirsgirêkê tevlî hilbijartinên 2007'ê bûm. Biryar siyasî nebe wê çawa karibin çewtiyeke wisa bikin?"

## Şivan Perwer dixwaze piştgiriya Kurdên Rojava bike

# Kurdên Sûriyê dibin xwedî TV?




Di destpêka meha borî di navbera hunermendê Kurd Şivan Perwer û hejmarek berpirsên rêxistinên siyasî yên Kurdên Rojavayê Kurdistanê de du civîn li dar ketin. Hevdîtin li ser vexwendina Şivan Perwer li bajarê Bonnê, li avahiya Weqfa Şivan Perwer, pêk hatin. Li gor agahiyên ku bi dest rojnameya Rûdawê ketine, hate zanîn ku sê endamên 'Komîteya Karê Hevbeş a Kurdên Sûriyê Li Almanya' amade bûbûn, herwiha çend nûnerên Partiya Azadî û çend berpirsên Partiya Yekîtiya Kurdistanî.

Li gor agahiyan, hunermend Şivan di destpêka rûniştina yekê de li ser rewşa nexweş a Kurdên Rojava li ser metirsî û zordariya ku ew bi dehan salan di bin de dijîn, rawestiyaye. Herwiha wî di berdewamiya axaftina xwe de ji bo piştgiriya Kurdên Rojava û başkirina rewşa wan daxwaza xwe diyar kiriye.

Piştî guhdarîkirina nerînên herdu aliyan baweriyek hevbeş derket holê ku ji aliyê ragehandinê de di nav rêxistinên Kurdên Rojavayê Kurdistanê de kêmasiyek mezin heye. Nemaze giringiya hebûna kanaleke televizyonê ya azmanî, di demekê de ku kanalên Kurdan pir bûne û buhayê avakirina kanalekê gihaye sînorekî ne giran. Di dawiya civîna yekê de xuya bû ku hunermend Şivan Perwer amade ye alîkariya Kurdên Rojava ji bo avakirina kanalek wiha bike, lê wî ji wan xwestiye ku ew bi xwe gava yekê bavêjin û di projeyek wiha de xwe bikin yek.

Çend kesên amadebûyî agahiyên herdu civînan ji Rûdawê re ragehandin lê wan di heman demê de diyar kirin ku ev daxwaz hîn tenê nerîneke û negihaye radeya projeyekê, lewra herdu alî naxwazin agahiyên fereh bidin çapemeniyê. Rûdawê hewl da tekilî bi Şivan Perwer re deyne, lê manajerê wî ragehand ku ew naxwaze vê demê agahiyan bidê çapemeniyê. Lê wî piştrast kir ku daxwazek li cem hunermend Perwer heye ji bo piştgiriya Kurdên Rojavayê Kurdistanê. Televizyon jî wê di vî alî de gavek be, eger mercên partiyên Rojava jî alîkar bin.

### Astengiyên vê projê

Di civîna yekê û ya duyem de jî aliyên amadebûyî li ser pirsgirêka aborî rawestiyan. Ji bo destpêkirina vê projeyê daxwazek xurt heye, lê aliyên ku alîkariya aborî bidin ne diyar in. Yek ji beşdarbûyan ragihand ku "Divê herdu alî bi gel re têkilî deynin, nemaze bi kesên dewlemend re û partiyê Kurdên Rojava jî beşekî mezin ji vê xebatê hilgirin ser pişta xwe. Lê jiyana rêxistinî ya partiyên Rojava diyar dike ku ew ê nikaribin gavek wiha bavêjin."

Ji bo berdewamiya vê projeyê amadekariyên civînek firehtir tê kirin, lê ne diyar e partiyên Rojava wê ji bo projeyek wisa amade bin an na.

## Çend biryarên nû derbarê biyaniyan de / Li Almanya cezayê zewaca bi zorê 5 sal zindan e

*Rûdaw – Bi biryareke Parlamentoya Almanyayê ku îna borî (15.04.2011) derçû, êdî li Almanyayê cezayê zewaca bi zorê heta 5 salan girtigeh e. Ji bilî vê biryarê çendîn biryarên din jî derbarê biyaniyan de derçûn.*

*Bi taybetî di van salên borî de mijara zewicandina keç û jinan bi zorê ketiye rojeva Almanyayê. Herwiha kuştina hinek jinên ku bêdilî xwe hatin zewicandin û hatin kuştin, cihekî berfireh di çapemeniya almanî de girt. Parlamentoya Almanyayê îna borî zewaca bi zorê weke sûcek qebûl kir û kesê ku êdî keçik an jinan bi zorê bide zewicandin, wê bi heta 5 salan zindan bê cezakirin. Di heman demê de mafê jinên ku dibin mexdûrê van karan hatin xurtkirin. Êdî ew jinên ku piştî zewaca bi zorê tên revandin, dikarin vegerin Almanyayê û wê mafê mayînê wergirin.*

*Biryarek din jî li dijî zewaca tenê ji bo paportê (Scheinehe) derket. Ji bo pêşîlêgirtina zewacên ji bo pasportê, dema wergirtina mafê mayinê tê dirêjkirin. Berê piştî du salan kesekî biyanî ku bi yeke alman re zewicî bû, mafê mayînê werdigirt. Lê ji niha û şûn de ew dem dibe sê sal, yanî eger beriya sê salan zewaca wan têkbiçe, kesê biyanî bêyî mafê rûniştinê dimîne.*

*Dîsa biryarek din derbarê mafê bêsînor yê mayîna li Almanyayê ye: Li gor biryara nû, tenê ew kesên ku ji kurseke întegrasyonê serketî derbiçin wê mafê mayîna bêsînor li Almanyayê wergirin. Ciwanên di navbera 15 û 21 salan de jî wê êdî karibin li serê xwe bibin xwedî mafê mayîna bêsînor, eger îspat bibe ku ew întegreyî civaka Almanyayê bûne.*

Helbestvan û çalakvanê Kurd Nedîm Yûsiv

# Li Kurdistanê ji terorkirinê rizgar bû, li Hollanda hat kuştin

▶Çapemeniya Hollandî: Şoreşvanekî Kurd bû.

▶Lawê wî: Ez ê rêka bavê xwe bidomînin.



Wêne: Rûdaw

**Hollanda (Rûdaw) -** Kurdekî rûniştvanê Hollanda bi destê ciwanekî Hollandî hat kuştin. Ew di sala 2005'ê de ji hewldaneke terorîstî rizgar bû, lê piştî 6 salan li welatê ku lê dima bi 'tesaduf' teqe lê hat kirin û hat kuştin.

Nedîm Yûsiv (42) ku bavê du zarokan bû (Mazlûm 17 û Henîf 6) ji sala 2007'ê ve li bajarê Alphen aan den Rijn li Hollanda dijiya. Dema roja 10.04.2011 di nav bazara bajêr de bi kirîna eşyayan ve mijûl dibe, ciwanekî Hollandî (24) bi awayekî armanc nediyar teqe li xelkê li bazarê dike û 6 kesan dikuje û 17 kesên din jî birîndar dike. Yek ji kesên ku hatin kuştin helbestvan û çalakvanê Kurd Nedîm Yûsiv bû.

Nedîm Yûsiv ji Rojavayê Kurdistanê bû û di sala 1969'ê de li bajarê Efrînê ji dayik bûbû, salên zêde çalakvanekî siyasî bû û di sala 2005'ê de ji mirineke nêzîk rizgar bû, piştî ku li Efrînê bombe jê re tê danîn û diteqe. Di encamê de Nedîm bi giranî birîndar dibe û direve Libnanê. Li Libnanê balyozxaneya Hollanda razî dibe ku Nedîm weke penaber wergire û Nedîm berê xwe dide Hollanda.

### Hevalên wî bawer kirin ku ev karê Sûriyê ye

Nedîm ku 4 dîwanên helbestan bi kurdî û erebî derxistine, li Hollandayê jî her bi karê nivîsandinê ve mijûl dibû, weke hevalên wî dibêjin: "Birînên wî baş nebûbûn û bi berdewamî diviyabû bihata dermankirin." Hevalekî wî ku ji ber sedemên ewlekarî nexwest navê wî bê belavkirin, dibêje: "Roja bûyerê bi telefonê li min geriyan û gotin Nedîm hat kuştin. Di cih de min di dilê xwe de got: Bi Xwedê Baasê li vir jî dev jê berneda û ew kuşt!" Ew dibêje di destpêkê de di nav Kurdên Rojavayê Kurdistanê de li Hollanda gotûbêjeke germ derbarê sedemên kuştina Nedîm de hat kirin: "Hinek kesan girê dida bi rewşa niha ya Sûriyê û bi baweriya wan dezgeha sîxuriyê ya Sûriyê dest bi kiryarên terorîstî dijî çalakvanên Kurd li Ewrûpa kiriye." Dûre ku nûçeya wêya belav dibe ku kujer Hollandî ye û Nedîm ji ber teqeya bêyî armancek diyar hatiye kuştin, "vê yekê heya cihekî dilê me xist cî de."

Ev hevalê Nedîm navê xwe eşkere nake, ji ber dibêje: "Naxwazim metirsiyê li ser jiyana kesûkarên xwe ku li hundirê Kurdistanê dijîn, çêbikim. Me şandek pêk anîbû û biryar bû di çend rojên bê de, ji bo agahdarkirina wan ji rewşa mafên mirovan li Sûriyê û Kurdistanê, serdana Parlamentoya Ewrûpa bikin.

Nedîm jî endamê şandê bû." Kawe Reşîd, ku çalakvanekî din ê Kurd e li Hollanda, van gotinan piştrast dike û dibêje: "Mixabin divê vê serdana xwe bê Nedîm bikin!"



### Kujer jî xwe kuştiye

Kesên ku bûyer bi çavê xwe dîtin, wisa behsa kujer dikin ku pantolekî leşkerî lê bû. Heya gulle pê re hebûn teqe kiriye û gava tivinga wî vala bûye, tije kiriye û li dikanekê dawî li jiyana xwe jî aniye. Şaredarê bajêr hejmareke telefonê ya taybet ji bo belavkirina agahiyan bo xelkê û medyayan derbarê bûyerê de vekiriye. Rûdawê têkilî bi wê hejmarê re danî û bi gotina berdevkê şaredariyê, "Kujerê Nedîm û hevwelatiyên din ciwanekî 24 salî bi eslê xwe Hollandî bû, bi navê Tristan Van Der V, ku endamê klûbeke sporê ya nîşanavêtinê bû û moleta hilgirtina 5 parçeyên çek li Hollanda wergirtibû." Bi gotina berdevkê şarevaniya Alphen aan den Rijn: "Hêjî bi tevahî nayê zanîn ku Tristan ji ber çi ev kar kir. Wî du name li pey xwe hiştibûn, lê ron nebûye ku sedemê kirina vê kiryarê çi bû."

### Dengvedana bûyerê

Medya û raya giştî ya Hollanda reaksyoneke xemgîn li ser vê bûyerê pêşan dan. Şahjina Hollanda û serokwezîrê vî welatî di peyamên xwe de bo kesûkarên qurbaniyan behsa qewimîna `karesatê` di civaka Hollandî de dikin û daxwaz dikin lêkolîneke hûr li ser bê kirin. Hevwelatî jî di medyayan de behsa nîgeraniya xwe himber bûyerê dikin. Jineke 82 salî bi navê Ann Mary De Brown yek bû ji kesên ku bûyer bi çavê xwe dît. Ann ji radyoya Hollandî ya navdewletî re got: "Yekemîn tişt ku hat bîra min rev bû. Bi ser de jî, min kîsê xwe ku eşyayên ku min kirîbûn tê de bû li pey xwe hişt û reviyam." Hevwelatiyekî din jî ku mala wî nêzîkî cihê bûyerê ye, ji televizyona fermî ya Hollanda re ragihand ku bi çavê xwe dîtiye çawa ciwanê Hollandî teqe li xelkê dike û dûre xwe jî dikuje.

Nedîm roja 14'ê Nîsanê bi beşdariya şaredarê bajarê Alphen aan den Rijn û çendîn nûnerên çapemeniya Hollandî, û bi amadebûna gelek dost û hevalên xwe hate binaxkirin. Roja piştî binaxkirina Nedîm, ew di çapemeniya Hollandî de weke "şoreşvanekî Kurd" hat danasin. Hevalê Nedîm, Riyaz Hemê ku di merasima binaxkirina wî de amade bû, wiha behsa Nedîm kir: "Nedîm ne tenê nivîskarê 2 pirtûkên helbestan bû, belki ew serkirdeyekî diyar yê tevgera Rêkeftin bû."



Di nav beşdarvanên merasimê de lawê Nedîm, Mazlûmê 17 salî jî hebû. Mazlûm wiha hestên xwe anîn ziman: "Bavê min ji bo demokrasî, azadî û mirovantiyê jiya. Eger bavê min ji bo xwe jiyaba, belkî niha ji qiralê Hollanda dewlementir bûye. Ji ber vê yekê ez dixwazim rêka bavê xwe bidomînin, ji bo ku xeyalên wî bibin rastî."

## 6 hezar kes daxwazê ji serokê Awustûrya dikin: Tikaye darvekirina Şêrko Mearifî rawestînin!

*Viyana (Rûdaw) – Kampanya 'darvekirinê li Îranê rawestînin' ku heta niha 6 hezar hevwelatiyên Awustûryayî û ji derve piştgiriyê didinê, di nameyekê de ji Serokê Awustûrya Hans Fischer daxwaz dikin ku hêza xwe ya siyasî bixe tevgerê ji bo "rawestandina darvekirina Şêrko Mearifî û azadkirina wî."*

*Şêrkoyê niha 31 salî ji Rojhilatê Kurdistanê, bajarê Seqiz e û bi darvekirinê hatiye mehkûmkirin û niha li girtîgeha Seqiz e. Weke ku di nameyê de hatiye ronkirin, Şêrko Mearifî bi karê çandî ve mijûl bû û dûr ji bingehên yasayî û mirovî bi vî awayî hatiye mehkûmkirin.*

*Li gor rapora Amnesty International sala borî 552 kes li Îranê hatine darvekirin. Lê dewleta Îranê dibêje ku 252 kes darve kirine.*



## Kurdekî xwe li Kaufhofê daleqand



**Munchen (Rûdaw) -** Li bajarê Almanya Munchenê Kurdekî ji Duhokê yê bi navê Elînd Yasîn Îbrahîm xwe daleqand û di cîh de jiyana xwe ji dest da. Yek ji hevalên Elînd, Şivan Amêdî ragihand ku ew ji mêj de wî nas dike û got, "Elînd kesekî giran bû, ti pirsgirêkên wî bi kesî re tune bûn, lê Elînd her roj bi otomata qumarê dileyîst."

Li gor agahiyên ku Şivan Amêdî dan Rûdawê, Elînd Yasîn Îbrahîm ji mêj de bi otomatê qumar dileyîst û dibe ku sedemê xwekuştina wî ev be: "Ji bilî mijûlbûna bi otomatê ti pirsgirêkên wî tune bûn, wek ez dizanim ligel malbata wî re jî ti pirsgirêkên wî tune bûn. Lê ji dema ku hatiye Almanya û pê ve Elînd bi otomatê dileyîst û her tim pereyê xwe winda dikir. Ji vê mezintir pirsgirêk tune ye ku bibe sedemê xwekuştina zilamekî ciwan."

Elînd li mixazeya Kaufhofê ya navenda bajarê Munchenê bi makîneyê paqijiya erdê dikir û li gor agahiyên ku Şivan Amêdî dane Rûdawê, Elînd roja 18'ê Nîsanê demjimêr 15:15 li nava Kaufhofê makîneya kar li ber dîwar rawestandiye, çûye ser û kabloyên elektrîkê li stûyê xwe badaye. Amêdî wiha dom kir: "Jineke Alman ew dîtiye û bang lê kiriye ka ew dixwaze çi bike. Lê jinikê derfet nedîtiye ku wî xilas bike û hawara xwe gihandiye hêzên ewlekariya avahiyê. Lê heta ew hatine, Elînd jiyana xwe ji dest dabû jî."

Elînd Yasîn Îbrahîm ê 29 salî beriya deh salan wek penaber hatibû Almanya û nêzikê 8 sal bûn li Kaufhofê karê paqijiyê dikir. Elînd Yasîn Îbrahîm xelkê eşîra Mizêriyê ya ji Duhokê bû û li Almanya bi jineke Alman re zewicî bû û kurekî wan ê 6 salî heye.

### Mizgeftên Kurdan piştgiriya kolanan kirin

# "Neviyên Şêx Seîd gotinên wî bi cîh tînin"



Wêne: Rûdaw

**Li Berlînê du mizgeftên Kurdan hene: Îbrahîm Xelîl û Navenda Mezopotamyayê**

**Alan Ken** Berlîn

Du mizgeftên girêdayî Cîvaka Îslamiya Kurdîstan (CÎK) li Berlînê kongreyên xwe lidarxistin. Di kongreyan de rêvebiriyên nû hatin hilbijartin û ji bo çalakiyên li Kurdistanê banga piştgiriyê hat kirin.

Yek ji meleyan got, "Îro li cîhê ku Şêx Seîd hatiye daleqandin bi hezaran kes limeja înê dikin. Ev tiştek gelek pîroz e."

Li Almanya, bajarê Berlînê du mizgeftên Kurdan, Îbrahîm Xelîl û Navenda Mezopotamya dawiya hefta borî kongreyên xwe lidarxistin û rêvebiriyên xwe nû kirin. Di herdu kongreyan da jî gelek mele, rispî û endam amade bûn û ji bo dema pêş a xebatê gelek biryar hatin girtin.

Di axaftinan de rexne li nêzikatiya Dewleta Tirk a ola Îslamê hat kirin û rewşa Kurdên li Almanya dijîn hat nirxandin. Gelek axaftvanan bal kişandin ser kêmasiyên mizgeftên Kurdan û pirs kirin ka çima Kurd diçin mizgeftên Tirkan?

### Li mizgeftên Tirkan oldarên Kurd

Kongra yekemîn roja şemiyê li Berlînê bi tevlîbûna bi dehan endaman li Mizgefta Îbrahîm Xelîl hat lidarxistin. Mele Seîd di axaftina xwe de behsa Hz Muhammed kir tekoşîna wî mînak da. Di berdewamiya axaftina xwe de Mele Seîd li ser mijara bikaranîna olê ji aliyê dewleta Tirk ve rawestiya û wiha got: "Îro li mizgeftên Kurdîstanê ziman û çanda kurdî qedexe ye. Propagandaya rejîma Tirk tê kirin. Oldar û meleyên Kurd tên cezakirin û kuştin. Ev zilmek mezin e divê hemû Kurd rabin ser piyan û li dijî vî zilmê derkevin."

**Piraniya oldarên Kurd diçin mizgeftên Tirkan. Ev ji bo me kêmasiyek mezin e. Divê em xebatek wisa bimeşînin ku hemû oldarên Kurd herin mizgeftên xwe**

Serokê Mizgeftê Ahmed Bayram jî di axaftina xwe de li ser rewşa Kurdên oldar ên li Berlînê sekinî. Bayram got, "Piraniya Kurdan îro diçin mizgeftên Tirkan. Ev ji bo me kêmasiyek mezin e. Divê em xebatek wisa bimeşînin ku, hemû Kurdên oldar bikişînin cem xwe. Tenê ne zilam, pîrek û zarokan jî." Serokê Meclîsa Gel a Berlînê Îsmaîl Parmaksiz jî behsa kêmasiyên saziyên Kurd kir û got, "Di navbera mizgeftên me û olê din de ti têkilî tune ye. Divê di navbera olên li Kurdistanê de têkilî hebin. Em li Almanya dijîn û divê di nav mizgeft û dêrê de jî têkilî hebin. Ev kêmasiyek mezin e." Piştî axaftinan kongre bi hilbijartinan berdewam kir, di encama hilbijartinê de Ahmed Bayram dîsa wek serokê Mizgefta Îbrahîm Xelîl hat hilbijartin.

### "Divê em piştgiriya welat bikin"

Roja yekşemê jî kongreya mizgefta navçeya Neukollnê ya bi navê Navenda Mezopotamyayê hat lidarxistin. Di kongrê de gelek mele û mirovên oldar amade bûn. Serokê dîwana kongreyê mele Îsmet axivî û behsa rûdanên li Kurdîstanê kir û got; "Îro li cîhê ku Şêx Seîd hatiye daleqandin bi hezaran kes limeja înê dikin. Ev tiştek gelek pîroz e. Gotinên wî yên wek, 'Wê rojek neviyên min rabin heyfa min bistînin' niha li hemberî dewletê tên pêkanîn.

Divê herkes piştgirtiya van çalakiyan bike." Li ser navê Cîvaka Îslamiya Kurdistan (CÎK) Mele Mihemed Çagli axivî û got, li hemû Ewrûpa ji bo dema pêş amadekariyên wan hene. "Ji bo em hemû Kurdên oldar bînin cem xwe me gelek proje amade kirine."

Piştî axaftinan bi dengdana hemû delegeyan hilbijartin pêk hat û Hacî Metîn Polat wek serokê mizgeftê hat hilbijartin.

**Hekîm Sefkan**

## Dizî



Mirov diz be, dizekî bi rûmet be. Mirovê gurrî, çima dike ku şeh bidize, ji bo bifroşe? Kes şehên kevin nakirin. Ez meselê dirêj nekim. Wê êvarê dengê orgê û erbanê ji oda TV hate guhê min, min baş famnekir, lê melodî ji min re ne xerîb bû. Min xwe negirt, ez hatim ku temaşayî TV bikim: bi hezaran jinên sergirtî, mêrên bi rîh civiyane, konserteke pir mezin bû, ya rast min weha texmîn kir. Min ji "laaa ilahe ilalaaaah" ku weke nakarat derbas dibû, pê ve famnedikir, lê melodî nas e. Heman min di cih de got: Ev stranbêjên dawetan, van stranên me jî xerakirine.

Ew strana "Hêjay e" bû ku min ji Rojîn re çêkiribû. Min xwest derkevim lê pankarta li ser serê koma muzikê, cil û bergên wan bala min kişandin. Mewlud bû. Kom jî sê-çar mêrên bi rîh bûn. Kamera dihate ser milet, bi dehan mêrên bi rîh govend dikirin. Hêjay e bibû "la ilahe illa alah?!"

Hem ji wê rojê re heqaret bû, hem ji wê stranê re.

Gelo ma straneke din ku hinekî nêzîkî olî be tune bû? Heydê we guhert, ma mirov di mewlude de bi zikir dikeve yan govendê digre?

Kesên ku heya niha wateya Arebeskê fêmnekiribin, ew bernama ku di TRT-6 de zindî hatibû weşandin, ji amadekarên wê heya bi kesên li wir, heya bi koma li ser dikê, heya bi kamermanan, hemû Arebesk bûn. Bi yek gotinê ji tiştên weha re AREBESK tê gotin, tiştekî bingeh ne diyar, tiştekî tevhev, ku mirov nizane nav lê bike.

Heya niha bi sedan stranên me hatine dizîn. Bi taybet piştî dewletê ew kanal vekir êdî dest avêtin stranên me yên vê rojê jî. Gelek stranên ku min çêkirine hem bernamevan hem jî mêvanên wan dixwînin, tev hev dikin, ez bi xwe ji strana xwe famnakim û li ber çavên min reşdikin. Ez aciz dibim, lê vê carê min nizanîbû ez aciz bibim, bigrîm, bikenim...

Hêjay e li ku,'la ilahe ila alh' li ku? Ilahî li ku, govend li ku?

Îca mesela min eve, ku tu gurrî yî, yanî tu ne stranbêjê dawetan î, tu ji qeside û beytên olî pê ve guhdar nakî, tu çima şeh didizî? Yanî çî te û 'Hêjay e' bi hev heye? Ku te melodiyek dizî ser binuxumîne, yan jî bi rûmet be, li gorî mijarê melodiyê bidiz.

Haydê hûn gurrî û we dizî, ma çima şehekî ku hezar carî di nav hezar porî re derbas bûye hûn difroşin?

Dêmekî yên dikirin jî hene, loma ew roj, ew bername, ew amadekarî hemû arebesk bû.




Wêne: Rûdaw

# Nikare lîstikvanên Kurd bibîne

## Kameran Bêtasî: Gelek caran em neçar bûne ji bo karên xwe keçên Tirk û Ereb bînin

▶80 berhemên wî hene, lê Sendîka Hunermendan endametiya wî qebûl nake.

**Ebdûllah Nihêlî** Dihok

Derhêner Kameran Bêtasî diyar kir ku li Behdînan pirsgirêka herî mezin a li pêşiya sînema û dramayan nebûna lîstikvanên keç û lewaziya teknîkî ye.

Bêtasî di sala 2000'an de bi berhemanîna dramayekê dest bi karê hunerî kir. Piştre wekî akterê sereki tevlî filmê 'Stêrên Dûyê' bû: "Herdu karan ji min re rê vekirin ku bikevim nava karê hunerî, êdî min dest bi nivîsandina senaryoya drama û klîbên hunerî kir."

Piştî li Dihokê Rêveberiya Sînemayê hat vekirin, li pêşiya Kameran hîn zêdetir dergehên karê hunerî vebûn: "Wekî projeya senaryoyê, min du kurte-film daye Rêveberiya Sînemaya Dihokê. Projeya yekemîn kurte-filmê Silwîd bû û piştî hat pejirandin, me sala 2009'ê dest bi kişandinê kir."

### "Silwid bû mertala festîvalê"

Cara yekemîn filmê Silwîd di sala 2010'ê de tevlî festîvala Dihokê bû û xelata derhêner, wênegir û senaryoya herî baş wergirt. Di heman salê de di festîvala sînemayê ya Besra de hat pêşkêşkirin û xelata derhênerê herî baş wergirt.

Meha Adara îsal filmê wî Silwîd tevlî festîvala Babil bû ku li ser asta Herêma Kurdistan û Îraqê 25 film beşdar bûbûn. Ji wan filman jî 6 kurdî bûn. Bêtasî derbarê festîvala Babîl de dibêje: "Dema filmê me hat pêşkêşkirin, gelek kêfa beşdarvanan hat û li wê derê navê wê kirin Mertala Festîvalê. Piştre wekî filmê festîfalê yê herî baş hat nîşankirin û xelat wergirt."

### "Cilên Kurdî li keçên Ereb û Tirk nayê"

Bi baweriya Kameran herêma Zaxo ji bo sînemayan cihê herî baş e, "Ji ber herêmek li ser sînor e, dema borî û niha gelek bûyer li ser çêbûne. Li wan navçeyan bi dehan car xelk penaber bûne û rastî pirsgirêkan hatine, her yek ji wan bi xwe çîrokek e."

Lê Kameran dibêje ku di karên xwe de rastî gelek zoriyan tê. Ew jî nebûna lîstikvanên keç ên ji wê herêmê: "Ji ber vê yekê gelek caran em neçar bûne ji bo karên xwe keçên Tirk û Ereb bînin."

Kameran tevlîbûna keçên Tirk û Ereb di karên xwe yên hunerî de wekî karekî baş nabîne û dibêje: "Ew senaryoya ku ez dinivîsim, keçek Ereb û Tirk nikare wekî keçek Kurd rol bileyîze. Yan jî tu cilên Kurdî li keçek Ereb bikî, lê nayê." Bi baweriya Bêtasî li herêma Behdînan yek ji pirsgirêkên din ên li pêşiya sînema û dramaya Kurdî, lewaziya teknîkî ye.

Bêtasî berê rexne yan dide sermayedar û kanalên ragihandinê û dibêje: "Nabe tenê em li benda hikûmetê bin. Divê sermayedarên Kurd fikra wê yekê bikin ku alîkariyê bidin drama û sînemaya Kurdî. Ji bilî vê yekê jî kanalên Kurdî amade ne filmên biyanî bikirin û bi dehan filmên Kurdî hene, lê nakirin." Tevî ku filmê Kameran tevlî çend festîvalan bûye û li du festîvalan jî pileya yekemîn bi dest xistiye, lê Sendîkaya Hunermendan Kameran nakin endamê xwe. "Heta niha ez ne endamê ti sendîkayekê me. Min çend caran daxwaza endamtiyê kiriye, lê dibejin endamtî sekiniye, heta piştî kongreyê."

**Biyografî**

Kameran Bêtasî di sala 1972'yê li gundê Bêtas yê girêdayî navçeya Zaxo ji dayîk bûye û tenê 2 salan xwendiye. Lê piştî raperîna 1991'ê xwe daye warê sînema û dramayan. Heta niha 80 klîb, drama û kurtefilmek kişandiye.




Wêne: Rûdaw

# Harward rêzê li Qubadî digre



Bi pêşkêşkirina 5 filmên derhênerê Kurd ê navdar Behmen Qubadî, Zanîngeha Harvard a li bajarê Boston a Amerîka di merasîmek taybet de rêz li Qubadî girt.

Beşa arşîvê ya filmên Zanîngeha Harvard roja 18.04.2011'ê piştî pêşkêşkirina 5 filmên Qubadî, di merasîmek taybet de û bi amadebûna bi dehan derhêner, sînemakar, aktorên biyanî û Kurd rêz li Behmen Qubadî girtin.

Ew filmên ku hatin pêşkêşkirin ev in: Stranên Welatê Dayika Min, Kîso Jî Dikarin Bifirin, Agahdariya Ti Kesê ji Pişîkên Îraniyan Nîne, Dema Hespên Serxweş, û Nîvê Mehê."

# Peywend albumekî meqam tije dike



Hunermend Peywend Caf bi niyet e ku du albuman derxîne û yek ji van wê tije meqam bin.

Niha Peywend Caf li Kurdistanê ye û ji Rûdawê re diyar kir ku niha bi amadekariya çend stranên nû re mijûl e, "Niyeta min heye du albumên stranan belav bikim, ji ber ku wê albumek taybet ji bo meqaman be û ya duyemîn jî wê ji bo çend stranên nû be."

Peywend diyar kir ku albuma wî ya yekem ji çend meqaman pêktê û her yek ji wan meqaman a navçeyek Kurdistanê ye. Albuma duyemîn jî dibe ku ji 9-10 stranan pêk were û "teksta 4'ên wan stranan ji aliyê Ziyad Eshed ve hatiye amadekirin."

Peywend Caf bal kişand ser wê yekê ku ew dixwaze di serdana bê ya Kurdistanê de, ji albuma xwe ya nû du stranan bike klîb.

# Angelina û 50 CENT tên Kurdistanê?



Rêvebirê şîrketa Babylon a ji Başûrê Kurdistanê, Selwan Cemîl, diyar kir ku ew ê Newroza bê li Kurdistanê konsera herî mezin saz bikin û hunermendê navdar ê Amerîkî 50 Cent bînin Kurdistanê. Wî herwiha got ku ew niha bi berhemanîna filmekî sînemayî derbarê dîroka Kurdistanê de mijûl in ku wê tê de "stêrkên Hollywoodê beşdar bibin, yek ji wan jî Angelina Jolie."

Şîrketa Babylon di sala 2005'ê de ji aliyê du birayan ve li Holenda hatiye damezirandin û ev çend sal in karê şîrketa xwe vegûhestine Hewlêrê. Şîrketê ji sala 2007'ê heta niha 15 konser ji bo hunermendên biyanî amade kirine, ji wan jî hunermend Gogoş, Angdî, Şadmîr, Spîde, Efşîn, Necwa Kerem, Moen Esfehanî, Şehram, Şuhre Soletî, Leyla Feruher, Îbê, Şeza Hesûn û hwd.

Li ser wan konseran gelek hunermendên Kurdistanê şîrketa Babylon rexne kirin ku giringiyê nadin hunermendên Kurd û ji hunermendên biyanî re konseran saz dikin. Lê li aliyekî din jî bi bawerîya hinek kesan van konseran aramiya Kurdistanê nîşanî derve dane, navdarî zêdetir kiriye û gelek geştyar anîne Hewlêr û Başûrê Kurdistan bi giştî.



# Îcar çenteyê wê bû mijar

Victoria Beckham bi çentê xwê yê 45 hezar Dolarî kete rojevê. Komeleya Mafê Sevalan, PETA îdia dike ku ji bo çêkirina vî çenteyî çermê tîmsehan bi zindî tê rakirin.



Hevjîna David Beckham, Victoria Beckham bû qûrbanê delaliya xwe. Li gor nûçeyan Daily Mail çenteyê ku Victoria Beckham bi xwe re digerîne ji çermê tîmsehan tê çêkirin û bihayê wê 45 hezar Dolar in. Daily Mail cîh dide îdiayên PETA'yê jî, lê berdevkê Beckhamê yê çapameniyê ev yek qebûl nekir û got çermê tîmsehan li gor rêbazên etîk tê rakirin û ev çerm li Amerîkayê ten firotin û li Îtalyayê jî tên dirûtin.

Endamê Polîtburoya Yekgirtûya Îslamiya Kurdistanê, Mihemed Ferec:

# Çareserkirina vê krîzê hikûmetek nû ya bi pejirandina her pênc aliyan e


Wêne: Rûdaw

Endamê Polîtburoya Yekgirtûya Îslamiya Kurdistanê, Mihemed Ferec, ku di guftûgoyên ligel PDK û YNK'ê de serokatiya şanda Yekgirtû dikir, diyar kir ku rewşa niha ya Kurdistanê ne ewqas giran e ku neyê çareserkirin, lê pêwîste deshilat bersivê bide û reforman çêke û hikûmetek nû bê avakirin ku her pênc aliyên wekî PDK û YNK, Goran, Yekgirtû û Komel li ser bigihin peymanê û aliyên din beşdar bibin û ev yek dikare dawî li aloziya niha bîne.

**Rûdaw: Herêma Kurdistanê di rewşa niha de li ser kenarek çawa ye?**

**Mihemed Ferec:** Rewşên bi vî awayî li her welatekî rûdidin, eger berpirsê yekem deshilat di awayekî xwezayî lê temaşe bike û wekî berpirsyartiyek netewî binirxîne, bi baweriya min zêde negirane.

**Niha me li salona pêşwaziyê kanala we kanala Spede dît û xwepêşandanên Kurdistanê wekî şoreş bi nav dikir, gelo bi rastî xwepêşandan gihiştine rewşekê ku jêrê bêjin şoreş?**

Me ji ragihandin û gelê xwe re gotiye ku binavkirina xwepêşandanên niha bi awayê şoreş, şaşitiyek mezin e. Eger li Tûnis, Misir û Lîbya behsa "here" dikin, wan xwepêşandan mirov dikare weke şoreş binav bike. Lê ya niha li Herêma Kurdistanê ne şoreşe. Em behsa reforman dikin, ji reforman jî giringtir ligel me ewe ku di fikirîn, daxwaz û niyeta me de nîne ku herdu hêzan (PDK û YNK) derbixîn û bavêjin.

**Lê hûn dibêjin, 'em narûnin, heya daxwazên me neyên pejirandin.'**

Berî du heftiyan biraderên PDK û YNK'ê despêkê daxwaz ji me kirin û gotin; em dixwazin bi hev re rûnin, lê tenê arîkariyê bidin me, tenê rûnin û ligel her aliyekê cûda. Ji bo em li ser hev zêde nekin, me ji ti pirs û raman bi yên din nekir û me got, pir xwezayiye. Ya giring ewe ku em ji hev qût nebin û vê pira guftûgoyan xirab nekin. Em di wan civînan de gihan encamên pir baş. Me pirsî, hûnê çi bi encama van xalane bikin, gotin em ê li gel hersê aliyan rûnin û piştre jî em ê rûniştinek pênc alî saz bikin. Ew encamên ku me di wan civînên tekane bi dest xistîn, di civînên pênc alî de bikin nexşerêyek, bêxin pratîkê, ji bo ji vê krîzê rizgar bibin. Lê mixabin li cihê ku ya em li bendê radiwestan ku civîna pênc alî saz bikin, ew beyaname derxistin.

**Ew bersiva beyanameya we bû?**

Daxuyaniya me sê xal bûn, dest ji kar kêşana hikûmetê, yan jî hilweşandina hikûmetê. Ev hikûmet du erkan jêre diyar bike; ya yekem diyarkirina demek ji bo hilbijartinê û ji bo wê hilbijartinê bingeh bê xweşkirin. Dûwemîn; projeyên heyîn bikin yek, bi tifaqî û bikin bernameya karê dema ku dimêne, lê bersiv 10-15 xal in. Gûnehbarkirina destê derve di nav de ye, berê dema digotin destê derve, armanca wan Îran û Tirkiye bû. Niha Îran û Tirkiye piştgiriyê didin wan ango dibe ku destê Ewrûpa di nav de hebe.

**Ya li ber Dergehê Sera dibe, hûn in yan xelke?**

Ew xelk in. Niha li tevaya cîhanê yek ji taybetmendiyên roja îro ye ku hêzek nû anîne meydanê, dikarin bêjin em gûh nadin hizbê jî û hizb jî derbaz kirine.

**Niha ew bingeh heye ku pirsgirêk bi diyalogê çareser bibin?**

Belê heye.

**Ji çi ve heye?**

Bi baweriya me ev alî hemû dilsozî û welatparêziya wan di astekê de ye, ligel desthilat û opozîsyonê jî. Li her cihê ku me zanî nîştîmaneke me di metirsiyê de ye, em ê biparêzin.

**Yekgirtû hikûmetek demkî an hikûmetek hevpar a nîştîmanî dixwaze, heya hilbijartinek din bibe?**

Me di dema danûstanên ligel PDK û YNK'ê de ev mijar behs kir, mumkîne di nava her sê aliyên opozîsyonê de cudahî hebe li ser hûrdekariyên vê meseleyê. Me weke Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê veto li ser ti kesî nîne, vetoya me tenê ser wî kesî ye, yê ku nikare bi rêkûpêkî karan birêvebibe. Ango desthilatên wî hebin û nikare mafê wê desthilatê bidiyê, berpirsyarî di stûyê wî de hebe û nekare wê berpirsyariyê cîbicî bike. Ji ber wek min li jorî jî behsa sê xalan kir û min got em ne dijî PDK û YNK`ê ne weke partî, lê em dijî gendelî û rewşa bêdadiyê û dijî wê mirovkanê û xizmaniyê ne ku niha heye. Duyem; axaftina me li ser cîbicî kirinê ye, ango her kesê ku cîbicîkirina wî ya baş be û vê ezmûna Herêma Kurdistanê biparêze û pêş bixe, em ê bibin leşkerên wî. Sêyem; Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê xwediya projeyekî serastkirin û çaksaziyê ye û her kesê vê projeyê weke xwe û di dema xwe de û bi alet û mekanîzmên xwe birêve bibe, em ê bibin leşkerên wî kesî bêyî ku em pirs bikin ka ew kî ye. Lê em têgihiştin ku ev corê karan, PDK û YNK jî guhdarî kirin û heta radeyekê nêzîkî me bûn ku ev hikûmet nikare niha van karan pêk bîne. Çima? Em ê mînakekê bînin: Çavdêriya Darayî niha bêtirî du hezar dosyeyên xelkên gendel li ber destî hene. Bila projeya me, projeya Deriyê Sera, projeya 17 xalî ya parlamenê jî bila bidin aliyekî, lê werin van dosyeyan lêbikolin, ji xwe ev karê Dezgehê Çavdêriya Darayî ye, ew dezgayekî hikûmetê û bi şêweyekî profêsyonel kar dike. Li Herêma Kurdistanê zêdetirî 600 hezar fermanberên te hene û 2 hezar dosyeyên te hebin, ji xwe pêwîste evane berpirsên mezin bin. Gelo me li Kurdistanê çend rêveberên giştî, rêveber û çend berpirsên dezgehê hene? Eger em kom bikin, baweriya min bi wê yekê heye dibe ku kes derbikeve. Ez nabêjim herin mal, lê pêwîste lêpirsîn li gel wan bê kirin. Ji xwe dibe ku nîva wan bê gûneh bin, lê pirs eve; çima lêkolîn li gel wan nayê kirin?

**Niha tê gotin ku civînên navbera PDK, YNK û Yekgirtûyê gelekî pozitîv bûn, lê paşê we projeyeke din pêşkêş kiribû?**

Em çaverê bûn ku piştî civînên sê alî, civîneke pênc alî pêk bê, me jivanek danî û me di civîna sê alî de ji PDK û YNK'ê re jî got ku di 3'yê Nîsanê jivanê wê projeya 22 xalî diqede, çima we projeya opozisyonê qebûl nekir, tevî ku wê opozisyonê bêtirî 650 hezar dengan qezenc kirine?

**Eger li Tûnis, Misir û Lîbya behsa "here" dikin, wan xwepêşandan mirov dikare weke şoreş binav bike. Lê ya niha li Herêma Kurdistanê ne şoreşe. Em behsa reforman dikin.**

**Yekgirtû deng daye Barzanî, post û nîştîmanperwerî jê dixwaze ku rolê xwe bileyîze**

**Gelo mercê we qebûlkirina projeyê bû yan danûstana li ser wê bû?**

Mercê me ew bû ew bêjin ev rewa ye, yan ne rewa ye. Ango bersivekê bidin, ji ber ku bersiv nedan, wate piştguhxistin û kêm dîtine. Em dibêjin mane ev opozisyon jî partiyên vê nîştîmanê ne û bêtirî 650 hezar deng qezenc kirine û xwepêşander jî piştgiriyê didin projeya me, wate hejmar bêtire, vêca boçî bersiva me nadin? Me di wan rûniştinan de ji PDK û YNK`ê re got divê sê tişt bên pêkanîn: Pêrabûnên yasayî ligel wan kesan bên kirin yên ku destê wan di kuştina xelkê de heye, ji xwe diyare çima wan nadin komîteyên lêkolînê.

**Lê ew dibêjin divê lêpirsîna wan kesan jî bê kirin ku teqe li baregehan kirin û polîs kuştin.**

Erê bê guman. Wan got bi ser de jî kesên ku xelk dehif dane, me got herçî heye û ew biryara ku serokê Herêma Kurdistanê derxist bînin, lê divê yasa ji kesên giran destpê bike. Me got hejmareke yasayên giring hene û dezgehên giring hene dikarin rê li ber gendeliyê bigirin, lê gava nayê kirin tê wateya ku hûn jî piştgiriya vê hikûmetê nakin, loma çareseriya herî baş ew e ku hikûmet bê hilweşandin û hikûmeteke pênc alî bê çêkirin.

**Daxuyaniya serokê Herêma Kurdistanê çawa dibînî?**

Pêngaveke dirust e bi aliyekî rast de, lê pêwîst e vê yekê bikin kiryar, çawa? Însyatîf jê re divê û divê bingeh jê re bê danîn û hemû alî kom bibin.

**Eger Mesûd Barzanî rola xwe weke serokê Herêma Kurdistanê bilîze, ne ku weke serokê hevbendiya PDK û YNK'ê, ji ber dibe ku hinek kes hebin di nav Yekgirtû de dengê xwe dabinê?**

Ne ku dibe ku, lê Yekgirtû deng daye Barzanî. Divê serokê Herêma Kurdistanê cuda be ji wêya ku aliyê terefekî bigire, ji ber ew serokê me hemûyane, serokê vê herêmê ye û em jî beşek in ji vê herêmê. Post, welatparêzî û ezmûna wî ya dirêj di xebatê de jê dixwaze vê yekê bike.

**Dem ji bo reforman maye?**

Erê, dikarî ji her xalekê ve dest pê bikî û bêjî ev xala destpêkê ye.

**Serokê Herêma Kurdistanê berî cejna Newrozê hinek xal ji bo reforman ragihandin, ku bi baweriya hinek çavdêran kitekitên ku di wan xalan de hene di projeya opozîsyonê de jî nînin.**

Gotina me jî ew e ji ber çi dest bi cîbicîkirina wan nekir, ji dêvla wê herdem mijûl in tometan dikin û daxuyaniyên tund derdixin û gefan dixwin, lê ji ber çi nehatin van reforman bikin. Ev 54 roj in xelk xwepêşandanê dikin, ji ber çi bersiva wan nadin? Parlamento çû Meydana Azadî û ew komîteyên hatibûn dirustkirin bo şopandina bûyeran, komîteya birêz mamoste Cemal Ebdul ku îstifa kir, ji ber gotin ew kes diyar in û eşkere ne û bi me nadin dadgehê û hizb jî alîkariya me nake. Komîteyên parlamentoyê jî ku hatin û raporên xwe xwendin parlamento tiştek nekir, loma wan jî îstifa kir.

## "Li Hewlêrê kar ji Silêmanî û Dihokê zêdetir e"

***Soran Behaedîn** Silêmanî - Li Başûrê Kurdistanê rêyek din ji bo kardîtinê peyda bûye: Lêkolerekî civakî bi rêya malperek înternetê derfeta kar ji ciwanan re dibîne û dibêje ku ew bi rêya malpera xwe mehane 120 derfetên kar belav dike. Malpera bi navê "Aganame" weke kovarek heftane ya li ser înternetê tê weşandin û heta niha 35 hêjmarên wê belav bûne. Kovar bi rêya e-mailê rojên duşeman belav dibe û xwediyê wê Hadî Emîn Mihemed (38) dibêje ku niha zêdetirî 19 hezar beşdarvan hene. Li gor xwediyê malpere, "Armanca me kêmkirina bêkariyê ye." Hadî rojane li pey derfetên kar ê di rojname, kovar, televizyon û radyoyan de tê belavkirin digere û kom dike. Piştre bi rêya mailan ji beşdarvanên xwe re rêdike: "Ez mehane zêdetirî 120 derfetên kar bi rêya mailê ji ciwanan re rêdikim."*
*Di encama karkirina kovarê de ji Hadî re derketiye holê ku derfetê kar li Hewlêrê ji bajarên din zêdetir e. Li gor Hadî sedemê vê yekê ew e, "ji ber ku li Hewlêrê saziyên wekî wezaret, konsûlxane, rêxistinên biyanî-navxweyî zêde hene."*



# Metirsiya otomobîlên gazê ne diyar e

▶Hostayekî otomobîlan: Dibe ku biteqe û makîneya otomobîlê têk bide

▶Li Hewlêrê 2500 otomobîlê ku bi gazê dixebitin hene

▶ "Gaz ji benzîn bêtir tehdê li motora otomobîlan dike"

**Rewa Ebdulla**

Beşek ji hevwelatiyan bi tirs û guman li bikaranîna sîstema gazê bo otombîlan mêze dikin û daxwaz dikin hikûmet li vê sîstemê bikole. Lê rêveberê şirketa Gazco dibêje: "Sîstema me ewlehiyê li ber çav digire û bi ti awayî metirsiya teqînê jê nayê kirin."

Nazenîn Ehmed (35) ku li Hewlêrê mamosteya qonaxa bingehînî ye, niha pir bi tirs li taksiyê siwar dibe û derbarê vê tirsê dibêje: "Min bihîstiye ew otombîlên bi gazê kar dikin eger rastî qezayekê bên diteqin û agir digirin." Loma pêwîst dibîne hikûmet li vê sîstemê bikole û eger metirsiya wê hebe, qedexe bike.

Projeya sîstema danîna gazê bo otomobîlan li Kurdistanê ji dêvla benzînê, ku weke Gazco tê naskirin, berî salekê ji aliyê şirketa Diyar Group gihişt Hewlêrê. Li gor gotina xwediyê şirketê niha 2500 otomobîl bi vê sîstemê li Hewlêrê kar dikin. Bingeha sîstemê almanî ye, lê ew amûrên ku li Kurdistanê bikar tên li Tirkiyê tên çêkirin.

Hosteyê çêkirina makîneyên otomobîlan li Hewlêrê Senger Ezîz (28) behsa metirsiya vê sîstemê bo Rûdawê dike û amaje dide ku gaz bandorê li ser makîneya otomobîlê jî dike: "Makîneya otomobîlê hişk dike û piştî demekê bandorê li ser piston û rînga otomobîlê dike û makîneyê têk dide. Heta niha bi dehan otomobîl ji ber van astengiyan anîn cem me û me ev sîstem ji wan rakiriye."

Lê Ferhad Hacî Xelîl nêrîneke berevajî pêşkêş dike û dibêje: "Ew gotinên ku derbarê xerabiya sîstema bikaranîna gazê bo makîneya otombîlan û teqîna wan tên kirin ne rast in, ji ber du amûrên kontrola gazê yên vê sîstemê hene û di egera her pirsgirêkekê de gaz tê rawestandin. Herwiha tanka gazê bi gulleyan jî nayê birîn, bo makîneyê jî piston naşikîne û paqij dimîne, bi ser de jî temenê makîneyê dirêjtir dike."

**Sîstema gazê ya ji bo otomobîlan tenê li welatan ku pileya germiya wan nizim e, serkeftî ye.**

Gelek şofêr ji ber erzaniya nirxê xazê li gor nirxê benzînê berê xwe dibin otomobîlên bi gazê dixebitin. Salih Elî ku li Hewlêrê şofêrê taksiyê ye, dibêje: "Sîstem nû ye û şirket garantiya salekê dide, heta niha bê pirsgirêk e, lê nizanim di pêşerojê de bandorê li ser makîneya otomobîla min dike yan na."

Rêveberê Projeya Gazco Pola Mihemed Macidî ragehand ku sîstema wan di bingeh de almanî ye û niha li Tirkiyê û hinek welatên Ewrûpa jî tê bikaranîn: "Hemû corên ewlehiyê tê de li ber çav hatine girtin. Tanka gazê bi sîstemeke taybet hatiye çêkirin, dikare heta pistûna 150 bar xwe rabigire û gulle tê de naçe. Du amûrên kontrolkirinê jî tê de hene, di dema pevketin an çirîna boriyê de bi awayekî otomatîkî gaz tê rawestandin."

Derbarê bandora vê gazê li ser makîneya otombîlê, Pola Mihemed got: "Ew gaza em bikartînin ji corê LPG ye û oktana wê 98 e, ti zererê nade makîneyê. Ew gaza ku zererê dide otombîlê jê re dibêjin SNG."

Endezyar Ehmed Bamernî ku danîştvanê Hollanda ye û lêkolînek li ser zererên sîstema gazê kiriye, dibêje: "Sîstema gazê tenê li wan welatên ku pileya germa wan nizim e, serkeftin bidest aniye. Lê eger pileya germê ji 40-45 derece bilindtir bibe, êdî egera teqîn û agirgirtina tankên gazê heye, loma sîstem li welatên Kendavê ne serkeftî bû."

Navborî da zanîn ku her çiqasî gaz di warê jîngehê de ji benzînê baştir e û jîngehê pîs nake, lê zererê li makîneya otomobîlê dike: "Ji ber ku madeya gazê hişk e, bandorê li ser piston û makîneyê dike û wan zuwa dike, ev jî wisa dike piştî demekê makîne têk here."

### "Îstasyona tijekirina gazê bibin derveyî bajar"

Bamernî ku bi riya kanalên televizyonê îstasyona tijekirina gaza otomobîlan li Hewlêrê dîtiye, dibêje: "Ji berpirsên Hewlêrê daxwaz dikim ku di demeke herî zû de îstasiyona tijekirina gazê bibin derveyî bajar, ji ber di egera her teqînekê de zerereke mezin dide navçeyê û kontrolkirina wê ne hêsan e. Li welatên Ewrûpa di nava bajaran de ti îstasyoneke tijekirinê tune."

Derbarê rakirina vê îstasiyona tijekirina gaza otombîlan di hundirê Hewlêrê de, Rêveberê Bergiriya Şaristanî ya Hewlêrê Xelîl Xizir Surçî got: "Em ji danîna vê îstasyonê nehatine agahdarkirin, em ê lêbikolin, eger metirsîdar be em ê daxwaza hilgirtina wê bikin."

## Xetên germ bi hawara jinan ve tên

*Soran Behaedîn* - *Rêxistina şiyansaziya jinan li Hewlêrê ji bo alîkarîkirina jinan xeteke germ datîne û berpirsa saziyê dibêje eger projeya wan li Hewlêrê biserkeve li bajarên din jî datînin.*

*Rêxistina şiyansaziya jinan bi hevkariya saziyeke Denmarkî û Yekîtiya Jinên Urdunê projeya `xeta alîkariyê` di Cotmeha sala borî de li Hewlêrê vekir, da ku bi rêya telefonê şîretan li jinên ku pirsgirêkên wan hene bike, yan eger pêwîstiya wan bi parêzer hebe ji wan re parêzer bigire.*

*Her jineke ku pirsgirêkên wê hebin dikare bi riya telefonê li van herdu hejmaran bigere: 07503094125-07503097943. Li gor gotina berpirsa vê saziyê heta niha 26 jinan peywendî ligel wan kirine ku pêwîstiya 12'an ji wan bi hevkariya yasayî hebû.*

*Berpirsa Rêxistina şiyansaziya jinan Sozan Arif got, ramana projeyê ji wê yekê derket ku jinên xwedî pirsgirêk kesî wan tune pişta xwe pê girêbidin û got: "Bi riya vê xetê em şîretan li jinên ku pirsgirêkên wan hene dikin, eger pêwîstiya wan bi parêzgeran hebe, em li ser hisabê xwe ji wan re parêzger digirin."*

*Yek ji rêveberê şopandina tundûtûjiyê dijî jinan li Wezareta Navxwe Arî Refîq, van xetên germ dibêje: "Tiştê herî girîng bo van xetan ew e ku bersiva telefonan didin, divê kesê ku bersivê bide xwedî dengekî hêmin û aram be û şiyana wî/ê ya guhdarîkirinê hebe, ji bilî zimanê kurdî, erebî û îngilîzî jî bizanibe."*

*Sozan Arif dibêje wan ji bo karmendên xwe bi hevkariya saziyên navdewletî 4 qurs vevkirine da ku fêr bibin çawa reftarê ligel kesên ku peywendiyê ligel wan dikin, bikin: "Eger em li Hewlêrê biserkevin, emê projeyê mezintir bikin."*



---

Ferman Çomanî Hacîawa


Wêne: Rûdaw

# Qereçiyên Kurdistanê ji parsekiyê bêzar bûn

**Rîsipiyekî Qereçiyan:** Keça xwe nadim kurekî ku parsekiyê pê bide kirin

**Keçeke Qereçî:** Ji birçîna bimirim parsekiyê nakim

Qereçiyên Kurdistanê hêdî hêdî ji parsekiyê bêzar dibin û dixwazin ji vê sinetê dûr bikevin ku ji bav û kalên wan gihaye wan. Hinek malên Qereçiyan biryar dane keçên xwe bidin kesekî ku parsekiyê bi wan neke.

Şêrîn Sedîq (41) ku diya 8 zarokan e, êdî hez nake zarokekî berşîr hembêz bike û destê xwe li ber xelkê dirêj bike. Ev jin a ku li bajarokê Hacîawa dijî, dibêje, "Êdî bêzar bûm destê xwe li ber xelkê dirêj bikim." Şêrîn Sedîq ji zarotiyê parsekiyê heta niha parsekiyê dike, lê niha bêtaqet bûye ji parsekiyê û dibêje: "Gava daxwaza pereyan ji xelkê dikim hest bi şermeke zor dikim û hemû canê min dibe xwêdan, gotinên kirêt ên xelkê jî li rexekî deyne, lê neçar im, jiyana me giran e û zarokên me zêde ne." Bi baweriya Şêrîn, eger jiyana Qereçiyan bê başkirin piraniya wan amade ne dev ji parsekiyê berdin.

Her çiqasî beşek ji parsekan bi taybetî jî Qereçî ji aliyê hikûmetê meaş werdigirin, lê parsekiyê jî berdewam dikin. Rêveberê Çavdêrî û Vejandina Civakî ya Bitwên li Raniya Hîmdad Refîq Seîd dibêje: "Piraniya Qereçiyên wê navçeyê meaş ji cem me werdigirin, loma ew ne ji ber xerabiya rewşa wan a aborî parsekiyê dikin, lê parskirin bûye çanda wan."

### Ji bo zarokan perwerda parsekiyê

Qereçî ji zarokatiyê ve fêrî parskirinê tên kirin, ew bi piranî di rojên înan de parsê dikin û di dema nimêja înê de diçin pêşber mizgevtan.

Hawjîn Xazî, zarokeke Qereçî ya 8 salî ye û niha hez dike bixwîne û dibêje: "Dixwazim bibim diktor. Dixwazim jiyana me jî biguhere, weke keçên Kurmanc bixwînim."

Hawjîn wiha axivî: "Ji parskirinê nefret dikim û xwezî dikim bê parsekî bijîm, ku parsê dikim birçî dibim, zivistanan serma digirim û havînan jî germ dibim."

Çiro Kemal (25) diya 5 zarokan e, zarokê xwe yê 2 salî hembêz kiribû, ku pir caran bo parsekiyê ligel xwe dibe û li pêşber xwe dirêj dike, ew jî ji parskirinê bêzar bûye: "Bêzar bûm ji parskirinê û gotinên kirêt, rojane hezar qiselokan davêjin ser me, lê neçar im, jiyana me giran e û eger kar nekin em nikarin bijîn."

Weke kevneşopiyekê mêrên Qereçî li mal rûdinin û jin û keçên wan parsê dikin, kêm caran mêrên wan kar dikin û zêdetir jî karê dest dikin, hinek ji wan jî karê dahol û zurnê di ahengan de dikin. Lê niha hinek mêrên wan jî gihiştine wê baweriyê ku êdî jinên wan parsê nekin, dixwazin çanda jiyana xwe biguherin.

Îdrîs Husên (55) ku rîsipiyê Qereçiyên nahiya Hacîawa ye, dibêje: "Rûniştina me nayê wateya ku hema pal bidin, lê ji ber pêşkeftina jiyanê ew karên ku em dikin rewaca wan nemaye."

### "Dem hatiye em dawî lê bînin"

Îdrîs gihiştiye wê baweriyê ku divê ew êdî xwe biguherin û dest ji beşekî çanda xwe berdin: "Divê em jiyana xwe biguherin û bi xwe kar bikin û hewl bidin zarokên me ne weke me bin. Min biryar daye keça xwe nedim kurekî ku parsê pê bike. Em ji vî karî û ji wan hemû gotinên nexweş ku ji keç û jinên me re tên gotin, bêzar bûne, loma dem hatiye dawî lê bînin."

Mîhreban Îdrîs (13) li pêşber bavê xwe bi şermînî behsa şûkirina xwe dikir û digot: "Şû ligel kurekî nakim parsê bi min bike, divê lihevhatî be û min xwedî bike. Hinek mal keçên xwe nakin parsek heya dema ku mêr dikin da ku şaşîtiyan nekin, lê eger ez ji nêza jî bimirim, parsê nakim."

Rêveberê Çavdêrî û Vejandina Civakî ya Bitwên li Raniya Hîmdad Refîq Seîd diyar dike ku dijwar e Qereçî bikarin dev ji parsekiyê berdin: "Ew berê desthilatdar bûn û bi standina bacan ji xelkê jiyane, niha jî çavên wan li destê xelkê ye ji ber ku desthilata wan a berê nemaye parsê dikin, lewra devjêberdana ji vê çandê ji wan re dijwar e."

..

Yasaya cezakirinê ya Iraqê di sê madeyan de behsa parsekiyê kiriye, madeya 390 dibêje her kesekî temenê wî zêdeyî 18 salan be û parsekiyê bike, mehek heta salekê tê zindankirin, herwiha madeya 391'ê ku taybet e bi kesên ku bi sextekarî xwe dikin kêmendam û parsekiyê dikin, cezayê salek zindankirin ji wan re hatiye diyarkirin, lê madeya 392 bi parsekiya zarokan taybet e li gor vê madeyê kesek parsekiyê bi zarokan bike, bi 6 meh zindan tê cezakirin.

Li qezaya Soran komelgehek bo Qereçiyan hatiye damezirandin, niha bi karên re mijûl dibin.

Îsal bi biryara Wezareta Perwerde li Silêmaniyê ji bo xwendekarên Qereçî xwendingehek di binî konê de hat vekirin.

## Serokê DalKurd: Me leyîst, lê wan gol avêt!




***Dalarna (Rûdaw) -*** *DalKurd di 16'ê Nîsanê de ligel Karlstad BK maça xwe ya yekem li saheya xwe leyîst û 0-1 winda kir. Maç di malpera DalKurdê de zindî hat weşandin.*

*Li Swêdê sezona lîgên jor hefta borî destpêkir û tîma Kurd, DalKurd di saheya xwe de bi Karlstad BK re leyîst, lê maça xwe winda kir. Serokê Klûba DalKurdê Ramazan Kizil ragihand ku wan 90 deqeyan leyîstiye ku golê bavêjin, lê tîma himber ji ber ku bi defans leyîstiye gol nexwarine. Kizil wiha axivî: "Me çi kir nekir gok di qeleya wan de derbas nebû. Tenê carekê kontratak kirin û gol avêtin." Maça DalKurdê ji aliyê firmeya Spream ve di înternetê de zindî hat weşandin. Kizil ragihand, "Nêzîkê 2 hezar kes wê rojê ketine malpera me û xwestine maçê zindî temaşe bikin, lê ji ber pirsgirêkên teknîkî ev yek pêknehatiye." Wek ku Kizil da zanîn, ji bo temaşekirina maçekê divê (59 Kron) 6 Euro bê dayîn. Maça duyem DalKurd wê roja duşemê bi tîma Lulea re bileyîze û ji bo wê jî wê futbolvanên Kurd 1000 km rê bidin ber çavan.*



### Yasin Kut: "Haya çapemeniya Kurd ji van xortan tune"

# "Tîma me tîma Mesut Ozil têkbir"

Dema li Almanya, li cem tîma SC Ludenscheidê dest bi leyîstina fûtbolê kir, hîn 6 salî bû. Bavê wî jî di Navenda Ciwanan a wî bajarî de cîhgirê serok bû. Di temenê xwe yê zarokatiyê de di nava lîga Westfalen a ciwanan A û B de leyîst û ji aliyê din ve jî li dibistanê perwerdeya xwe dom kir. Piştî çend salan beşdariya di nava futbolvanên ciwan ên hilbijartî (Westfalen Schutzpunkt) kir. Ango ji bo pêşerojê hêvî dida antrenoran.

Evrîm Kut niha xortekî 25 salî ye û hem fûtbolvan e û hem jî perwerda xwe didomîne. Ji sibehê heta dana êvare li Zanîngeha Munsterê di beşa akademiya bankayê de perwerde dibîne û piştî ku ji kar derdikeve çentê xwe digire û ligel hevalên xwe yên tîma SG Hemer diçe antrenmanê. SG Hemer niha di Lîga Landeslîga de cîh digire. Kut dide zanîn ku wê tîma wan di dawiya vê sezonê de derbasî lîga jor bibe û ji bo wî jî wê demeke girîng destpê bike. "Zanîngeha min jî piştî şeh mehan bi dawî dibe. Eger tîma me têkeve nav Lîga Westfalen, ez ê biryar bidim ku bi profesyonelî tê de cîh bigirim. Niha kar û fûtbol bi hevre gelek zehmet dibe."

Evrîm Kut di salên navbera 2001 û 2004'ê de di jêrxaneyê tîma Ostrisch Iserlohn, SC Ludenscheid de tevlî gelek pêşbirkan bûye û di wir de ligel forvetê Borussia Dortmundê Nurî Şahin û forvetê Real Madridê Mesut Ozil leyîstiye. "Ez û Nuri Şahin di pêşbirkên salên 2001 û 2002'ê de leyîstin û piştî salekî Nurî bû profesyonel. Mesut jî di sala 2003 û 2004'ê de di jêrxaneya Schalkê de dileyîst û min jî di jêrxaneya Ostrisch Iserlohnê de dileyîst, me ew têkbirin."

### "Diyarbakirsporê soz da ku min transfer bike"

Evrîm derbarê serkeftin û pêşkeftina Mesut Ozil de dibêje "derfetên Schalkê gelek in, tîmeke mezin û dewlemend e, lewma xortên jêrxaneya wan dibin profesyonel, em jî li cihê xwe dimînin." Evrîm û bavê xwe Yasîn Kut di sala 2009'ê de, dema ku Diyarbakirspor di Lîga Super a Tirkiyê de dileyîst, çûne Amedê û bi rêvebirên Diyarbakirsporê re hevdîtin çêkirine. Bavê Evrim, Yasin Kut dibêje ku wî hertim xeyal kiriye ku kurê wî rojekê di tîmeke Kurd de fûtbolê bileyîze, wê demê jî tîma herî li pêş Diyarbakirspor bû. Yasin Kut derbarê hevdîtinên li Amedê wiha axivî: "Antrenor û rêvebirekî ji Diyarbakirsporê bi me re eleqedar bûn. Wan di leyîstikên ceribandinê de li Evrîm temaşe kirin û Evrim du gol avêtin. Herdu kesan jî Evrîm ecibandin û gotin em ê binêrin." Yasin Kut dide zanîn ku ti agahî ji rêvebirên Diyarbakirsporê derneketiye û xeyala wî bi cîh nehatiye. Evrîm jî bal dikişîne ser hejmara fûtbolvanên Kurd li Almanyayê û dibêje ku haya çapemeniya Kurd ji wan tune û ew fûtbolvan an wek Tirk an jî wek Alman tên nasîn.



# Temenê wan biçûk e lê hunera wan mezin e



**Bawer Çem** Amed

Tîma Basketbolê ya Keçikan û Kuran a Şaredariya Baglarê di Şampiyoniya Anatoliya Tirkiyê de dereceya sêyemîn û pêncemîn bi dest xistin. Tîma keçikan madalyaya bronz bi dest xist. Keça kurd Zîlan Gulsum jî weke lîstikvana herî baş hate hilbijartin û wê êdî di Tîma Milî ya Tirkiyê de bilîze.

Tîma Basketbolê ya Keçikan a Şaredariya Baglarê bi vê serkeftinê navê xwe di dîroka basketbola Amedê de nivîsand. Tîma ku berê di şampiyoniya Anatolyayê ya li Meletiyê de di nava 8 tîman de bibû tîma herî baş, di Şampiyoniya Anatolyayê de jî heman serkeftinê bi dest xist û dilê Kurdan hênik kir.

### Keça kurd wê di Tîma Milî ya Tirkiyê de bilîze

Yek ji lîstikvana vê tîmê keça kurd Zîlan Gulsum ku lîstikvana herî serkeftî ye, mafê lîstina di Tîma Milî ya Tirkiyê de qezenç kir. Antrenorê tîmê Remzî Atli diyar kir ku ew bi lîstikvanên xwe pir serbilind e û ev tişt gotin: "Di hemû pêşbirkên li herêmê de lîstikvanên me serkeftineke mezin bi dest xistin. Ez li ser navê wan gelek kêfxweş im. Em ê ji vir û şûnde bi moraleke mezintir xebatên xwe bidomînin."

### Tîma kuran di rêza 5'an de ye

Tîma Basketbolê ya Kuran a Şaredariya Baglarê jî di hemû musabeqeyan de serkeftin bi dest xistin û di Anatolyayê de bûn 5'emîn. Antrenorê lîstikvanên kur Gokhan Yildirim destnîşan kir ku digel ew temenekî ji hevrikê xwe biçûktir derketine pêşbirkan jî, serkeftineke baş bi dest xistine û ew ê di pêşerojê de muheqeq serkeftineke baştir bi dest bixin.

## Ji xwendevanan



### Rexne an heqaret?

Min ji ber karîkatûra ku di hejmara Rûdawê ya 24'ê Adara 2011'ê de di rûpela duyemîn de hatibû weşandin, hewce dît vê nameyê ji we re binivsînim.

Ez dikarim wê karîkatûrê wiha bînim bîra we: Du tekerên erebê li ser hev hatine danîn û yeka din jî, ku dişewite, li ser wan hatiye danîn. Bi çirîskên agir Newroz hatiye nivîsandin. Li kêlaka rastê ya tekeran, serokê gelê Kurd birêz Abdullah Ocalan rawestiyaye û destê wî yê çepê li pişta wî, bi destê xwe yê rastê jî tekerê ku dişewite nîşan dide û dikene. Li cem Ocalan gerillayek heye û ew jî demançe daye serê kesekî ku dibe rewşenbîr be an jî alîgirê aştiyê be. Gerîlla dixwaze li vî kesî bide û wî di nava tekerî şewitandî re bavêje. Li alyê din ê teker jî, kûçikek rawestiyaye ku di stûyê wî de ala Tirk heye.

Beriya her tiştî ez dikarim bêjim ku mirov dikare PKK'ê û serokê wê ji hinek aliyan ve rexne bike. Lê divê di bin navê rexneyan de mirov heqaretê neke, di bin navê rewşenbîrtiyê de egoyên xwe têr neke, çîra neke û karîkatûrên ku Dewleta Tirk jî naweşîne divê mirov neweşîne. Ev yek dibe bêaqiltî. Ew kesê ku karîkatûr çêkiriye, ne tenê li Ocalan heqaret kiriye, herwiha li rêxistina ku bi deh hezaran şehîdên wê hene û li hemû şehîdên Kurdistanê jî heqaret kiriye. Em qebûl bikin jî nekin jî, hez bikin jî nekin jî, di bin banê Ocalan de bi milyonan kes rabûne ser piyan. Ev karîkatûr bi hestê bi milyonan mirovan dileyîze û wan diêşîne. Ji aliyê din ve ev kesê ku karîkatûr çêkiriye navê Newroza ku bûye sembola azadiyê bikaraniye, lê herwiha di vir de agirê Newrozê ji bo îşkenceyê hatiye bikaranîn. Li aliyê din, bi fîgûra kuçîkê ku di stûyê wî de ala Tirkiyê jî heye ku ev jî li gelê Tirk heqaret e.

Gelê me jî weke welatê me hatiye perçekirin û li her aliyê dinyayê hatiye belavkirin. Tişta ku ez ji rewşenbîrekî Kurd hêvî dikim ew e ku vê perçebûnê bibîne û di berhemên xwe de hewla yekîtiyê bike.

Ressam û karîkatûrîst weke kesên "dîn" tên nasîn. Bi taybetmendiyên xwe ji hemû kesan cuda difikirin, cuda dibînin û cuda dijîn. Ew bi xwe reng, raman û awirên nû nîşanê me didin. Bê wan jiyan gelek teng dimîne, weke ku damarekî bedena mirov kêm be. Lê eger li ser navê hunerê kesekî ku di jiyana xwe de qet têr nebûye rabe û ava qirêj a ku di nava damarên wî de diherike, birijîne ser tevgera rizgariya gelê Kurdistanê, mirov nikare vê yekê qebûl bike. Eger armancek wî wek yekîtiya gel û welat hebe, divê welat û gelê ku wek puzzleyê hatiye perçekirin, bîne cem hev.

Bi kurtahî, divê em ji bîr nekin ku PKK di her çar perçeyan de şer dike. PKK rêxistina Kurdan a herî bihêz e li her aliyê dinyayê. Ti rêxistineke din nekariyê vê yekê bidestbîne. Bi vê aliyê xwe ji PDK û YKN'ê jî zêdetir li pêş e. PKK hêza motor e di Kurdistanê de. Bêyî ku alternatîfa wê bê çêkirin, heqaretên li ser PKK'ê û serokê wê, wê negîhin armanca xwe. Hewldanên wiha tenê alîkariya propagandaya dijmin dike. Ez wek Kurdekî welatparêz bi vê karîkatûrê diêşim û ji xwe re wek heqaretê dibînim.

*Metîn Elçî*

## Pêwîst e Kurdên Sûriyê çi bikin?



**David Romano**

Berî çend mehan min di vê qunçika xwe de derbarê Kurdên bê nasname yên li Sûriyê de nivîsandibû. Biryara sala 1963'yê ya Şamê ya bêbeşkirina nêzîkî 100 hezar Kurd ji nasname û hevwelatîbûna Sûriyê, yek ji kiryarên herî mezin ên bê dadî ya rejîma Şamê ye. Niha jî ew hêjmar bûye nêzîkê 300 hezar kesî, ji mafê xwe yê herî despêkê bêpar in û nikarin di civakek nûjen de kar bikin. Min bal kişandibû ser wê yekê ku bê zextên navnetewî yên zêdetir, rejîma Esed di demek nêzîk de dest ji vê siyasetê bernade.

Ev jî berî "Bihara Ereban" a ji raperîna Tûnisê destpê kirîbû. Herî dawî jî pêla xwepêşandanan giha başûrê Sûriyê. Nêzîkê du heftiyan ajot û heta Kurdên Sûriyê jî dest bi xwepêşandanê kirin. Niha jî rejîma Şamê ji Deraa heta Lazqiye û li Cezîre dest bi zextan dike. Rêveberiya Obama jî bi awayek çaverênekirî biryar girt ku Beşar Esed bi "Reformxwaz" binav bike, nemaze ku di 11 salên borî de ti reformek eşkere tune.

Piştî ku xwepêşandan berfirehtir bûn, hêjmara qurbaniyan û acizbûna gel zêdetir bû. Bi vî awayî jî rejîma Sûriyê rastî dudiliyê hat. Wekî hewldanek ku pêşiyê li pêşketina wê pêlê bigre, Beşer Esed ji nişka ve berî çend rojan biryar da ku mafê hevwelatîbûnê bide Kurdan. Bi vî karî jî daxwazek Kurdan a herî mezin anî cih û soza hinek reformên din jî da.

Bêgûman li vê derê lîstikek siyasî heye. Ji bo vegerandina mafê hevwelatîbûn û encamdana reformên zêdetir, pêwîst e Kurdên Sûriyê niha dawî li xwepêşandanên xwe bînin. Nabe ew ti hêmayek hevgirtî li gel xwepêşandanên Ereban nîşan bidin. Eger Kurd vê yekê ji rejîma Sûriyê bipejirînin, wê demê Esed dikare ji sedî 10'ê rûniştvanên Sûriyê bêdeng bike.

Lê pejirandina pêşgaviya rejîmê ji aliyê Kurdan ve, pêwîstî bi baweriyê heye. Çima rejîma Sûriyê pêwîst dibîne ku piştî 58 salan mafê herî despêkê bide Kurdan? Eger aramî vegeriya welat, gelo wê demê wê ew soz bê bîra hikûmetê û wê reformên zêdetir bike? Dema beşên din ên Sûriyê bêdeng bûn, tevahiya hêzên Şamê bi awayek hêsan wê bikarin Kurdistana Sûriyê bişkênin û wekî sala 2004'ê bikin. Em ji dîrokê ve dizanin Kurdên Sûriyê nikarin bi tenê li dijî Hikûmeta Şamê serbikevin. Mixabin pêşgaviya reformê di dema krîzê de, di nava xwe de nebûna rastiyan dibîne. Ev jî derseke û dibe ku pir kêm hikûmetên radîkal werbigirin. Mînak; pêla xwepêşandanan Fas (Mexrîb) negirtiye nava xwe. Ev jî ji ber wê yekê ye ku şahê Fasê dest bi reforman kir, beriya ku xelk neçar wî bikin ku refoman bike. Ji ber vê yekê jî hilbijartinek zehmet li pêşiya Kurdên Sûriyê ye. Ew bi gûman temaşeyî rejîma Esed dikin, lê eger nerazîbûna xwe bêxin ser xwepêşanderan, wê demê wê bi xwînê baca şaşitiyan bidin.

Herwiha şaşbûna Kurdên Sûriyê di çavê mirovên din de, wê girantir be. Ev jî ji ber wê yekê ye ku çekdarên serserî bi "biyanî" temaşeyî wan dikin û wê dede bên ser kuştina "yên din."

Ji sedî 90'ê rûniştvanên Sûriyê ne Kurd in, lê xwepêşandanên din ên Sûriyê dibe ku bêyî Kurd û ligel Kurdan serkeftî bin. Herwiha eger Kurd pêşgaviya Esed red bikin, xwepêşandanê berdewam bikin, ciwanên wan li ser cadeyan bên kuştin û rejîm hilweşe, dibe ku hikûmeta nû ya Şamê wekî Baasiyan temaşeyî wan bike. Ew jî ev e; ev biyanî ne û tevlî sîstema me nabin.

Ji aliyekî din, eger demokratxwaz hikûmetek nû li Şamê ava bikin, wê mafê Kurdan bidin. Bêyî guh bidin wê yekê ku Kurd tevlî hilweşandina rejîma Esed bûne yan na.

Ji ber vê yekê dibe ku ji bo Kurdan rêya herî baş ew be ku pêşgaviya Esed bipejirînin. Tevî ku zehmet e bawerî bi sozên ji bo encamdana reforman hebe, lê dema wê yekê hatiye ku hevokên neçar ên wekî "Spas serokê mezin" bêjin, destxweşiyê li xwepêşandanên Ereban bikî û biçî mal. Kurdên Sûriyê ji zû de baca rejîma stemkar dane, ti kesî jî li Deraa, Dêrilzur, Humis û Hemayê peyvek jî derbarê Kurdan de nekiriye û tevî ku bi salane jî tên çewisandin.

## Li Bakurê Kurdistanê divê "Bloka Kurdî" serkeve!



**Bayram Ayaz**

Li Tirkiyê çi mijareke siyasî girîng hebe, li hêla me, li Bakurê Kurdistanê doza Kurdî yekser mohra xwe li wê bûyerê dide. Hilbijartina Parlametoya Tirkiyê ya 12'ê Pûşperê jî wisa lê hatiye.

Li rojavayê Tirkiyê ev hilbijartin wek bûyereke çarenûser ji bo pergala (sistema) kemalist-statukoparêz tê nirxandin. Encamên hilbijartinê wê kudreta partiyan û her wisa hêza civakî û siyasî ya li pişt partiyan derxe holê. Sistema Tirkiyê wê li gorî van hêzan şekil bigre. Sê blok hene: Bloka yekem Tirkçiyên kemalist (CHP) û yên turanî (MHP), bloka duyem muhafazakarên Tirkperezên ne kemalist û turanî ku AKP nûneriya wan dike û bloka sêyem jî Kurd in. Hêzên demokrat û liberal yên tirk mixabin ji hev belav in. Hin partiyên biçûk û kesayet hene ku di nav CHP, MHP û AKP'ê de cîh nedîtine li derve mane. Ev hêzên biryarder nînin.

Li derveyê herêmên Kurdan bazara siyasî di navbera AKP, CHP û MHP'ê de ye. AKP dixwaze MHP'ê li bin benda ji sedî dehan bihêle û bi rêjeyeke bilind (ji sedî pêncî) cara sêyem bibe hikûmet. AKP wek nûnerê "sermiyandarên Anadoluyê" vizyoneka siyasi ya bi navê "Tirkiyeya 2023" daye pêş xwe. Wisa xuyaye kemalist û turaniyên statukoparêz wê sernekevin, AKP'ê bi avantaj e. Têkçûna xeyala koalisyoneka CHP û MHP'ê ji xêra Kurdan e û ji bo Tirkan jî baş e. Ji bo vê yekê me di nivîsareke xwe berê de gotibû: Bila li Bakurê Kurdistanê bloka Kurdan serkeve û li seranserê Tirkiyê jî sistema Ergenekonê têk biçe. Lê AKP jî nebê qadirê mutlaq. Hêviya me ji vê hilbijartinê ev e.

Em werin herêma Kurdistanê. Li hêla me hilbijartin di navbera AKP'ê û bloka Kurdên ku xwedî li nasname û doza xwe ya siyasi-netewî derdikevin de ye. AKP li Kurdistanê nûnerê Dewleta Tirk e. Stûnên bernameya AKP'ê çar "tek" in: "Yek milet, yek dewlet, yek al, yek welat". Di axaftina xwe ya îro de (18.04.2011) "tek"ekî din jî li "çar tekên" xwe zêde kir, got: "Yek zimanê fermî". Tiştekî din jî got: "Li vî welatî hêdî pirsa Kurd nîne, pirsên birayên min yên Kurd hene" (Kürt meselesi yok, Kürt kardeşlerimin sorunları var). Ma hewce ye mirov siyaseta "tek tek"ê û van gotinan şîrove bike! Dev ji armanca dewleteka kurdî berde, Recep Tayyip Erdogan bi van gotinan rê li ber demokrasiyeke ferehetnîkî, fereh-zimanî û fereh-kulturî jî digre. Doz û daxwazên Kurdan çi ne, bila ew biryara xwe di konferanseke netewî de bidin. Lê berî her tiştî divê Kurd bi xwe hebin. Hêz bin û nûnerê piraniya civaka xwe bin. Ji bo vê yekê avabûna "Bloka Kurdî" karekî pîroz e û divê berbijêrên vê blokê di hilbijartinê de li deverên Kurdan ji AKP'ê zêdetir dengan bi dest bînin. (Biryara vetoya YSK'ê rewşeke nû afirand. Hêvîdar im tevgera Kurd vê êrîşê jî bi yekhelwestî pûç derxe.)

## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

### Hûsên Hebeş tevlî ŞIIRISTANBUL dibe

Helbestvanê kurd Husên Hebeş têvlî 5'mîn festîvala 'International Istanbul-Beyoğlu – Poetry Festival (ŞIIRISTANBUL)' dibe.

**Dem:** 26 'ê Nîsanê – 1'ê Gulanê 2011
**Cîh:** Tarlabaşi Bulvari Çorbaci Sk.
**No:** 13 Taksim / Stenbol
**GSM:** 0090.533 560 69 83
**E-MAİL:** sztombak@yahoo.com

***www.siirfestivali.org***
**Têkilî:**Salih Zeki Tombak



### Peyamên xwe ji Rûdawê re bişîn

Xwendevanên hêja,
êdî hûn dikarin peyam û îlanên xwe ji me re bişînin, ew ê belaş li vir werin weşandin. Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-maila **info@rudaw.eu** ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir biweşînin.

### Çarşema Sor li Almanyayê tê pîrozkirin



**Oldenburg**

**Dem:** 20.04.2011
**Demjimêr:** 16.30
**Cîh: Mala Êzîdiyan (Yezidisches Forum)**
Eidechsenstr. 19
26133 Oldenburg

**Bername:**
- Rêzgirtina karekî dînî ji alyê Qewlbêj Merwan Babiri
- Zarokên Dersa Dînî
- Govend û Dilan
- Muzîk
- Basinbar
- Ziyaretî
- Helbest û lîstikên hawaskar

**Siegen**

Dem: 24.04.2011
Destpêk: saet 15.00
Navnîşan:
Mehrzweckgebäude Setzen
Buschhütter Str. 81
57078 Siegen-Obersetzen

**Visbeck**

Dem: 22.04.2011
Destpêk: saet 14.00
Navnîşan:
Visbecker Damm 38
49429 Visbeck

**Lehrte**

Dem: 25.04.2011
Destpêk: saet 13.00
Navnîşan:
Veranstaltungshalle
Burchard-Retchy-Ring 7b
31275 Lehrte

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Ji malbata Eyyûbîyan, wî dînê îslamê rizgar kir. 2- Êşkence, êş, cefa – Navtêdan û pesnê Hz. Mihemed – Çêbû, hat dinyayê – Armanc, meqsed, kam. 3- Raketin, nivistin – Cezekirin, recimkirin (berepaş) – Ne mê, mêr, zilam. 4- Heq, hiqûq, dadwerî – Hiqûqî, wekhevî. 5- Erdzemînek – Eşîrtî, malbatî. 6- Gotinek ecêbmayînê – Fêkîyek tirş (berepaş). 7- Cephe, hevkarî - Xebat, xizmet. 8- Kûçika mê – Bext, şens, qird. 9- Navekî zilaman, dilêr – Deng, awaz – Apo, mamo. 10- Kesê tiştên binê erdê derdixe (berepaş) – Filîz, kulîlk yan lemê nû derketî, kat.

**Serejêr:** 1-Maldar, xwedîyê sermayê. 2- Êşkence, ezîyet – Cil û bergek lixwekirinê. 3- Kombûn û yekîtîya hêza şewqê, çekek şewqê – Meha 9.an. 4- Bilind, payedar. 5- Kesê nakokîyan derdixe, dolabgêr. 6- Na, no (berepaş) – Heywanek Latîn Amerîkayê – Notayek. 7- Lîztikek 16 kevirî – Roja em tê de ne. 8- Stûnên elektrîkê, darên ku têl pêve hatine girêdan – Erd, xak (berepaş). 9- Pê cil û berg tên kewandin, kewî (berepaş) – Ji bo çi, bo. 10- Maqûl, hêja – Rok, tav, 24 seet. 11- Kesê yekem. 12- Ango, meselen. 13- Eşîr, malbat. 14- Qirş û qal, tiştên şewatê (berepaş). 15- Çima, sebeb. 16- Îstasyon, baregeha radyo û televizyonê.



### Bersivên hejmara 91



## Tendirustî

# Ji bo zarokanînê temenê herî baş


**Dr. Fikret Yildiz***

Li welatê me û herwiha li gelek welatên cîhanê gelek keç di temenê ciwan de dibin dayîk, lê ev yek li Ewrûpa ne wisa ye. Piraniya jinan di temenekî mezin de dibin dayîk. Bijîşk diyar dikin ku ew jinên ku di navbera 35 û 40 salî de dibin dayîk, hem ji bo wan û hem jî ji bo zarokên wan hinek metirsî derdikevin pêş.

**Çi metirsiyên temenê mezin hene dema ku jin bixwazin bibin dayîk?**

**Dr. Fikret Yildiz:** Hertişt di wextê xwe de rast û baş e. Ku sal di nav de çûn, di bedena jinan de guherandinên balkêş çêdibin. Movikê wê weke berê baş nalivin, goştê canê wê elastîkiya xwe winda dike û hestiyên wê qels dibin. Dema ku jin bi zarok ma, malzaroka (Uterus) wê 40 carî girtir dibe û barê bedena wê bi dehan caran zêdetir dibe. Ew jin di rewşa normal de bi qasî 15 kîloyan jî qelewtir dibe. Dema ducanî dibe ew nêzîkî 10 mehan wî barî bi xwe re dikişîne. Gelo ka mirovekî normal û xurt dikare wî barî 24 seatan li xwe barbike û bikşîne? Heta dawiya jiyana wan piştêşî û êşa movika li wan kêm nabin. Di dema zayînê de jî travmayên nebaş derdikevin holê. Bi wan jinan re sinorên tûrê mîzê xiradibin û destava mezin dikeve tengasiyê. Gelek ji wan jinan, ji ber şermê, nerihetiyên xwe ji ti kêsî re nabêjin. Lê dema ku ew pirsgirêk di wextê de bê naskirin, mirov dikarin wan baş derman bikin, ango ew ne bê çare ye. Li cem hin jinan jî hestiyê xotê ji cih derdikeve. Ew jin wek werdekan birêve diçin. Ew bi rêya emeliyatekê, an jî bi girêdana kembereke taybet tê dermankirin. Lê bi pêşketina teknîk û derfetan ew pirsgirêk gelek kêm bûne. Mînak bi rêya jimnastikê pêşî li wan tên girtin. Di temenê 20-30 salî de jin dikarin zûtir bi zarok bimînin û saxlembûna zarokên wan jî li gor jineke hîn pîrtir baştir e. Berî 35 saliyê anîna zarok baştir e, şîreta me li jinan ev e.



**Rîzîkoyên ji bo zarokan çi ne?**

Ew jî girêdayî biçûkbûn, an jî mezinbûna wan e, an ji nexweşiyên kromozoma ne. Dibe ku ling, an jî piyên wan qut an jî şeht bibin. Dema zayînê zarok ji kanala welidandinê bi zor derkeve, mejiyê wan bê oksîjen dimîne ji alîyê hiş û livandinê paşde dimînin.

Herwiha dibe ku îhtîmala Sendroma Down, Trisomî 13, 18, 21 jî di 35-40 salî de gelek zêde dibe. Ew jî zarokên mongol in.

**Ew jinên bi temenê mezin ducanî dimînin pêwîst e kîjan kontrolan bikin?**

Bila kontrolên peroyodîk bikin, hîn kontrol hene ku ew standart in.

a- Çawa hat zanîn ku jin bi zaro ye, divê ji dayikê xwîn bê hilgirtin û li ser CMV, Toxoplasmoz, Sorik, Sorsorik, Frengî, Antikorê grûba xwînê û tevahiya xwîna normal bên kontrolkirin.

b- Di 11-15 hefteyî de Amniyosentez û Koriyonsentez (Ava dayîkê yan jî parçeyek ji hevalzarokê tê hilgirtin û ji van nebaşiya Kromozoman tên naskirin).

c- Di hefteyên 16-17 de Tripletest yan jî Doubletest .

d- Di 20-22 hefteyî de Ultrasona prenatal û di 25-32 hefteyî de 3D/4D. Bi van re kemorgani jî tên kontrolkirinê.

e- Ji 28 hefteyî da heta zayine, CTG=NTS. (CTG dengê dilî dergûşan û tîra dayikê tê tesbît dike)

*Amadekirin: Zelal Çelîk*

**Dr. Fikret Yildiz** *Kurdê Anatoliya Navîn e, li Almanya dijî û bijîşkê jinan e.*

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişînin: info@rudaw.eu

# Welatê me



## Xewnek Mîrxan heye...

Ez Mîrxan im, heft salî me û li Almanyayê ji dayîk bûme. Niha li bajarê Neuss diçim dibistanê. Li dibistanê ez zimanê almanî hîn dibim, lê li malê, bi bav û dayika xwe re bi kurdî daxivim. Ez dixwazim bibim doxtor, ji bo ku zarokên Kurdan derman bikim.




Gola Wanê gola herî mezin e li Kurdistanê. Firehiya vê golê 3713 km² ye. Di nava Gola Wanê de giravek bi navê girava Axtemar heye. Bajarê Wanê dikeve rojhilatê vê golê û Çiyayê Sîpanê jî dikeve bakurê golê.

Pirs: Gola Wanê dikeve kîjan parçeyê Kurdistanê?

A. Başûr B. Bakur C. Rojhilat D. Rojava

Bersiv: Bakur

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

l i

Lepik



Dil

Kurê min, ma ev çi ye, vê salê qet notekî te yê xurt nîne, hemî lawaz in. Ma tu fedî nakî?

Bavo, ma tu çima xwe aciz dikî?
Tu dizanî ev ne nivîsa min e, ev mamosta nivîsandiye.




## Bûka Baranê

Dema baran dibare û tîrêjên rojê di nava baranê de derdikevin, wê demê kevanekî rengareng li ezman xûya dibe. Li hinek deran mirov baz didin, ji bo ku di bin vî kevanê rengîn de derbas bibin, da ku mirazên wan pêk werin. Li hinek herêmên Kurdistanê ji vê lîstika xwezayê re dibêjin BÛKA BARANÊ û hinek deveran jî dibêjin KESKÛSORÛZER, li hinek deverên din jî dibêjin RENGARENG.
Ji bo ku bûka baranê çêbibe, bi barîna baranê re divê tav jî derkeve. Dema baran dibare û hinekî ewir kêm dibin, tîrêjên rojê di nava dilopên baranê de derbas dibin û ji van tîrêjan heft rengên sereke li ser hev rêz dibin û weke kevanekî rengîn li ezman xûya dikin. Oxxxxx çi dîmenek romantîk e...